Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 56
31'ê January
Buha: 150 Tûmen

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Buş: "Emê Bersiveke Tund Bidin Îranê"



Serok Komarê Amerîkayê roja duşem, 29'ê mehê, di hevpeyvîneke de tevî Radyoya Navneteweyî ya Amerîkayê got: "Heke Komara Îslamî tund û tûjî û êrîşên li Îraqê xurtir bike, dê berbirûyê bersiveke tund ya Amerîkayê bibe".

# Divê Pirsgirêka Kerkûkê, Li Gora Destûra Îraqê Were Çareserkirin



Piştî ku Turkiyê di heyamê borî de gefên xurt ji bo vegerandina Kerkûkê bo ser Herêma Kurdistanê xwarin û gelek konferans, semînar û civînên awarte ji bo dijberîkirin tevî vê pirojeyê encam dan, Berdevkê Wezareta Derve ya Amerîkayê, Şan Mak Kormek di derbarê pirsa Kerkûkê de careke din daxuyaniyek da û got divê pirsgirêka Kerkûkê, li gor destûra Îraqê were çareserkirin.

Wî herwiha diyar kir ku ew pirseke aloz e, lê belê dîtina çareseriyê jî di destê Îraqiyan bi xwe de ye.

Di sala 2005'an de, Parlemantoya Îraqê di destûra xwe de ji bo pirsa Kerkûkê xala 140'an diyar kiribû. Li gor vê xalê divêt di dawiya îslal de refrandom li Kerkûkê were çêkirin.

Makormek eşkere kir ku ew pişgiriya refrandomê dikin û ji bo pêkanîna wê yekê ew dê alîkar bin.

## Şehîdkirina Ciwaneke Kurd Li Mehabadê



Roja 26'ê vê mehê, Ciwanê 21 salî yê Kurd li Mehabadê **Bîjen Badûzade** li taxê Mengoran diçe cem kesekê ku jê re bibêje dest ji firotina madeyên bêhişker berde û ji vê hindê zêdetir canê ciwanên Mehabadê tevî mirin û îtiyadê berbirû neke. Bîjenê şoreşvan dikeve boseya hêzên hov ên Ewlekariya rejîma Komara Îslamî ya Îranê û tê gulebarankirin û birîndar dibe. Birîna wî gelek dijwar bûye, lê baweriya qahîm û şoreşvanî ya xwe ji dest nade. Dema ku hêzên dijî gelî tên wî bi saxî bigirin, Bîjen bi teqandina naricokê jiyana xwe bi dawî tîne. Bavê Bîjen, Cehangîr (Hûşeng) jî girtiyeke siyasî ye û bi îdamê hatiye mehkûmkirin. Niha di girtîxaneya bajarê Urmiyê de ye. Gulçîn, Xûşka Bîjen a 16 salî jî ji bo nîşandana nerazîbûnê li hember cezayê îdamê ji bo bavê xwe, xwe şewitandiye û jiyana xwe ji dest daye.

Ew endamekî çeleng yê nepenî ê PDK Îranê bûye.

Zanyariyên berfirehtir li dor vê cinayeta ne mirovane li ser malpera me bixwînin.

### Nameya Servekirî Ji Bo Dewleta Otrîşê:

## Ji bo radestkirina Sehrarûdî'yê bikujê Dr. Qasimlo bixebitin



Piştî ku nûçeyê girtina Pasdarê terorîst, Mihemedcefer Sehrarûdî li Hewlêrê ji aliyê hêzên Amerîkayê ve hate ragihandin komek ji kesayetiyên mezin û xebatkar ên Kurd, Îranî û biyanî nameyek servekirî ji dewleta Otrîşê re şandin û tê de daxwaz hatiye kirin ku ji bo girtina bikujê Dr. Qasimloyê nemir, Cefer Sehrarûdî bixebitin û wî terorîstî radestî dezgehên dadê yên Otrîşê bikin û mehkeme bikin.

Hêjayî gotinê ye ku deqa nameya han ji bo: Wezîra Karê Derve ya Otrîşê, Xanima Dr. Orzula Pilasnîk, Sekreterê Giştî yê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî, Rêxistina Efûyê ya Navneteweyî, Rêxistina Çavdêr ya Mafên Mirovan û Fedrasiyona Navneteveyî ya Mafê Mirovan re hatiye şandin.

*Deqa nameyê di malpera me de bixwînin.*

**Nivîskar û zimanzan, Samî Tan:**

## "DİVÊ REWŞENBÎRÊN KURD DEV Jİ HİŞMENDİYA PARÇE, HOZ Û EŞÎR Û HİZBÎ BERDİN, YEKÎTİYA XWE XURT BİKİN"



Hevpeyvîn dî rûpela 9-11'an de

# Gefên Turkiyê, Sedem Û Encamên Wê

Selîm Zencîrî

Li pey hiloşandina rejîma Beesê, guhartinên bingehîn di Îraqê de pêk hatin. Kurd weke hêzeke sereke di Îraqê de bi hevalbendiya hêzên hevalbend dewr û roleke girîng û pozetîv li herifandina rejîmê û herwiha pêkanîna tenahî û aramî û avakirina hikûmeta federal li Îraqê de lîst. Hevalbendiya Kurdan bi Amerîkayê re ne çiyê dilxweşiyê bo gelek ji welatên cîranê Îraqê û bi taybet Turkiyeyê bû. Turkiye bi xwe jî ku hevalbendê Amerîka û endamê “**NATO**”yê bû, wê demê rê neda hêzên hevalbend heya ku wî welatî weke binke û pêgehek leşkerî bo veguhastina eskeran li dijî rejîma Sedam bi kar bînin. Ew karê Turkan derbeyek mezin ji vê hevalbendiyê û berjewendiyên demdirêj yên Turkiyê re xist. Ji aliyê din ve jî Turkiye ji tenahî û ewlehî û pêşketinên li Herêma Kurdistanê û herwiha xebat û tekoşînên bona vegerandina deverên veqetiyayî ji Kurdistanê bo hembêza Herêma Kurdistanê aciz û nigeran e.

Mideheke ku em dibînin berpirsiyarên hikûmetê û Parlemana Turkiyê berdewam gefên êrîşê û bezandina sînorê Kurdistanê li Kurdan dixwe û bi qasê 240000 leşkerên teyar bi alev û îmkanatên leşkerî li ser sînorê Kurdistanê cihgir kirine.

Ger berê bi hinceta bûna binke û hêzên girîlayên PKK’ê gef dixwarin, lê niha pirsa Kerkûk û Turkemanan aniye rojevê. Gotinek Erdoxan di vê derheqê de heye ku dibêje: “Em nikarin taba vê rewşê bikin û li hember PKK’ê û guhertina demografiya bajarê Kerkûkê de bêdeng bimînin û divêt refrandoma Kerkûkê were paşxistin”.

Gelek ecêb e di sedsala zanist û teknolojî û azadî û serxwebûna gelan û hejmoniya cîhanîbûnê û rakirina sînoran de, berpirsiyarên dewletek e bi nav sekolar û demokratîk vegerine sedsalên tarî û bi metod û lojîkek hişk û req bilivin. Ew jî lojîk û metodek ku bêtir ji 80 salan e dîrokê fathe li ser 400 sal desthilatdariya biyom a împeratoriya Osmanî de xwandiye. Lê niha jî rayedarên Turkiyeya Kemalîst di hizra vê desthilatê de ne û bi vê dîtinê mêzeyî Îraq û Kerkûkê dikin. Niha jî li piraniya civînên Parlemana Turkiyê de bas û nîqaş li ser Kerkûkê dest pê dikin, li ser hebûna hêzên PKK’ê li Çiyayên Qendîlê de berdewam dike û bi egera pêkhatina dewleteke serbixwe ya Kurdî li Başûr bi dawî dibe.

Hêjayî gotinê ye ku Kerkûk bajarek stratejîk ya Kurdistanê ye û bi sedema dewlemendî di warê niftê û maytêkirin û dijberiya welatên cîran hêj nevegeriyaye ser Herêma Kurdistanê û carê çarenivîsa wê nediyar e. Li gor yasaya bingehîn ya Îraqê divêt heta dawiya sala 2007’an, referandomek bo rohnbûna çarenivîsa vî bajarî bihê encamdan. Diyar e li piratîkê de jî madeya 140’ê ya taybet bi Kerkûkê ketiye qonaxa cîbicîkirinê û hin gav jêre hatine avêtin. Bo mînak bo her Kurdek mişextkirî bona vegeriyan bo Kerkûkê perçe erdek û 10 milyon dînar hatiye terxankirin û herwiha berevajî jî ji bo derketina Erebên hînayî bo Kerkûkê.

Bêguman ew gef û maytêkirinên Erdoxan û berpirsyarên din piştî çend bêhêvîbûnên Turkiyê ji Amerîkaya desthilatdarê deverê û Ewropayê li dor tundrewiyên li siyaseta hundirîn û herêmî a Turkiyê di deverê de çevkaniyê digre. Herwiha danîna şert û mercên tundtir û girantir ji aliyê YE’ê ve bo Turkiyê bi sedema pêpeskirina mafê mirovan, ku eva jî bûye asteng û pirsgirêkek mezin li pêşiya bi endambûna Turkiyê di YE’ê de û di encam de hemû xebat û tekoşîna wan bona endambûnê bi şikest û têkçûnê re berbirû kir.

Renge evane parek ji wan sedeman bin bona domandina vê siyaseta nejadperestane ya turkan. Lê hin sedemên din jî hene ku dikarin bibandor bin li ser girtina helwestên bi vî awayî. Ew jî:

- Hevkêşeyên siyasî yên hundirê Turkiyê. Gera Serok Komariya Ehmed Nejdet Sezer bi dawî tê û Erdoxan dixwaze li gor destûra Turkiyeyê mifahê ji dengê zorahiya endamêm Parlemanê bistîne û vê postê bi dest bixe. Eva jî di rewşekê de ye ku Jeneralên Turkiyeyê pêşwaziyê ji vê xwast û cehda Erdoxan nakin. Lewera ev gefane dikare meşkanê û şanogeriyeke Erdoxan be bo rakişandina Jeneralan bo aliyê xwe.
- Berçavnegirtina berjewendiyên Turkiyê ji aliyê Amerîka û Ewropayê ve, lewra nikare dest li ser dest danê û temaşevan be.
- Metirsiya bûna Kurdên Başûr bi dewlet û tesîra wê li ser Kurdên Bakûr, Turkiye ditirse ger ku deverên veqetiyayî ji Kurdistanê vegirine ser Herêma Kurdistanê, Kurd dê serxwebûna xwe ragihîn in.
- Bêhêvîbûn ji bi encam negihandina xebatên li dijî PKK’ê û çaresernebûna vê pirsê ji aliyê Kurdînatoriyê ve.



Dewleta Turkiyeyê ji bilî gefan, di piratîkê de jî gelek xebat li dijî pêşketinên Herêma Kurdistanê û cîbicînekirina madeya 140’an encam dane. Her di vê çarçoveyê de çend rojan berî niha kongira Kerkûk – Enqere bi bê îzna Hikûmeta Îraqê girêda û Kurd weke neteweya sereke di Kerkûkê de bo vê kongireyê gazî nekir û tenê hin girûpên tundrew û têkder yên Turkemen û Ereb beşdarî kongireyê dan. Herwiha midehek e ku teqîn û kiryarên terorîstî li Kerkûkê û bi taybet li taxên Turkemen û Kurdan de zêde bûne, eva jî di halekê de ye ku berpirsiyarê tayê 3’ê ya Partiya Demokrat piştrast kir me belge di dest de hene ku “MÎT” a Turkiyê, berpirsiyarê van teqînan li dijî dezgehên hikûmetî û welatiyan e. Mînaka han armancên mirar û pîs yên Turkan bona afirandina girjî û aloziyan di navbera pêkhatên neteweyî di Kerkûkê de derdixe heta ku Amerîka û hikûmeta Îraqê neçar bikin dev ji madeya 140’an berdin û rê ji bo armanc û maytêkirinên xwe xweş bikin.

Di vê derheqê de him hikûmeta Îraqê û him jî Amerîkayê, Turkiye hişyar kirin ku mafê destêwerdan di kar û barên Îraqê de tu nine û pirsa Kerkûkê girêdayî îradeya gelên Îraqê ye û dê bi xwe çareser bikin û herwiha daxwaz kirin ku xwe ji çûne nav xaka Îraqê biparêze û bo çareseriya pirsa PKK’ê bi hikûmeta Îraqê û Amerîkayê re bikeve hevkariyan.

Herçiqas ku ez egera êrîşa Turkiyê bo ser Herêma Kurdistanê gelek lawaz û zeîf dibînim, lê destdirêjî bo ser her kes, alî yan dewletekê nirx û zirarên xwe hene. Lewra dewleta Turkiyê jî divêt bizanibe ku di encama destdirêjî kirina ser Herêma Kurdistanê de:

- Divêt xewna endambûn di YE’ê ji bîr bike.
- Dê zirarê bi pêwendiyên wê bi Amerîkayê re bigihîjine.
- Dê berengarê hêza Pêşmerge bibe.
- Torîzm ku parek ji çavkaniya dahata Turkiyê ye, bo heyamek dirêj dê raweste.
- Dijberiya navbera Enqerê û Kurdên Başûr dê kûrtir bibin.
- Dê derfet ji bo PKK’ê û hêzên neyar yên dewleta Turk pêk were ku bi hemû şiyan û hêza xwe êrîşê bikine ser dewleta Turkiyeyê.
- Turkiye dê di warê Aborî, Leşkerî û Locestîkî de tûşî zirar û ziyanek gelek mezin bihê.

# Peyama Deftera Siyasî Ya PDK Îranê Bi Hinceta 61'emîn Salvegera Avakirina Komara Kurdistanê



**Rêzdar Mihemednazîf Qadirî Endamê Polîtbîroyê PDK Îranê**

**Hevwelatiyên xweştevî!**
**Xelkê xebatkar yê Kurdistanê!**
**Kadro û Pêşmergeyên leheng yên Kurdistanê!**
**Mêvanên hêja!**

Xûşk û birayên ezîz!

Îcazê dixwazim ji aliyê Deftera Siyasî ya PDK Îranê ve bi can û dil cejna 2'yê Rêbendana îsal, 61'emîn salvegera avakirina Komara Kurdistanê ji gelê Kurd, malbatên serbilind ên şehîdan, girtiyên siyasî û hemû hogirên azadî, demokrasî û serbestiya Kurdistanê pîroz bikim û hêviya serkevtin û serfiraziya pêtir ji bo PDK Îranê, avaker û alahilgirê Komara Kurdistanê pîroz bikim.

**Xûşk û birayên rêzdar!**

Piştî hiloşîna rejîma dîktator ya Rizaxan û hatina hêzên hevalbend di şerê duyemîn yê cîhanî de ji bo Îranê û ew rewşa siyasî ku di Îranê de pêk hat, bizava nîştimanî û demokratîk ya Îranê û tevgera rizgarîxwaz ya neteweyên Îranê çû nava qonaxeke nû. PDK Îranê jî ji wê delîveya hêja û baş mifah stand û di roja 2'ê Rêbendana sala 1324'ê Rojî(22.01.1946'an) de, di rê û resmeke hêja û berfireh de, bi beşdariya xelkê bajarê Mehabadê û bajarên din ên Kurdistanê, kesayetiyê jêhatî û navdar yê gelê Kurd, Pêşewa Qazî Mihemed, rêberê PDK Îranê di qada Çarçira ya bajarê Mehabadê de, bi hesteke pîroz ya welatparêzî ve Komara Kurdistanê hate îlankirin û şabûn û kêfxweşî xiste nava dilê tev welatparêzên Kurd li hemû parçeyên Kurdistanê. Bi damezrandina Komara Kurdistanê xortên şoreşvan ên Kurd, ji parçeyên din yên Kurdistanê rû kirine Komara Kurdistanê û xwe gihîjandine bajarê Mehabadê, Qibleya hêviyên Kurdan. Beşdariya wêrane û bibandor ya Barzaniyan bi serokatiya xebatkarê neteweya Kurd, **Mistefa Barzanî** ku di Komara Kurdistanê de bi sedema xebat û tekoşîna tejî serwerî û serbilindî, pileya Jeneraliyê jê re hate bexşîn, di xizmetkirin bi armancên Komarê û parêzvanîkirin ji destkevtên neteweyî û nîştimanî yên Komara Kurdistanê de roleke girîng û berbiçav hebû û dîrokeke tejî serfirazî û rûmetê ji bo xwe û gelê Kurd tomar kir û bûn bi remz û sembola berxwedaniyê li hember dujminên Kurd û Kurdistanê de.

Her wiha beşdariya çend kes ji Efserên weltparêz û azadîxwaz ên Kurd ji Kurdistana Başûr bi navên **Mistefa Xoşnav, Xêrula Ebdulkerîm**, **Mihemed Mehmûd** û **Izet Ebdolezîz** di Komara Kurdistanê de cihê hêja û taybet yê xwe heye û hatina wan di dîroka Komara Kurdistanê de wekî helwesteke welatperwerane hatiye tomarkirin û xizmetên wan ên neteweyî ji bo tev xortên Kurd cihê rûmetê ne.

Ji bilî vana, azadîxwazên Kurd ji Kurdistana Sûriyê û Turkiyê û heta qasekê ji Yekîtiya Soviyeta berê jî seredana Komara Kurdistanê kirin û piştevaniya xwe ji vê desthilata netewî xuya kirin û bi awayê cur bi cur xizmet bi armancên Komarê kirin. Her ev piştevaniya bênimûne ya gelê Kurd bû ku birêveberên Komara Kurdistanê bi dilgermiyeke zaf dest bi kar û tekoşînê kirin û Komara Kurdistanê di ew temenê demkurt yê xwe de, karî xizmeteke mezin û berbiçav ji neteweya Kurd re bike û beşek ji hêviyên kevnar û dîrokî yên gelê Kurd cî bi cî bike, siyaset û metodên birêvebirina erkên xwe li gorî pîvanên civaka pêşverû berçav bike. Ji aliyekê tevî gelên azadîxwaz ên cîhanê têkiliyan çê bike û ji aliyekî din ve bi gelên rizgarîxwaz yên Îranê re pêwendiya dostaniyê ava bike û peymana alîkarî û hevxebatiyê bi wan re girê bide. Peymana dostanî û alîkariya her du Komarên Kurdistanê û Azerbaycanê di dîroka xebata azadîxwaziya her du neteweyên Kurd û Azerî de mînakeke berçav û hêjayî rûmetê ye.

Herwiha tevî tevgera azadîxwaziya Îranê û hêzên siyasî têkiliya dostîniyê çê kir û ji bo parastina destkevtên siyasî û demokratîk ên tevgera azadîxwaziya Îranê hevkarî kir.

**Xûşk û birayên hêja!**

Komara Kurdistanê gelek destkevt û serkevtinên mezin ji bo neteweya Kurd û tevgera nîştimanî ya Kurdistanê weke diyarî anî. Komara Kurdistanê yekemîn desthilata neteweyî û demokratîk ya Kurd bû ku xebata limêjîn ya gelê Kurd xiste ser rêbazeke siyasî ya pêşverû. Bo cara yekemîn zimanê Kurdî fermî hate îlankirin û di dezgeh û organên Komara Kurdistanê de mifah jê hate wergirtin û di dibistanan de xwendin û nivîsandin bi Kurdî hate bikaranîn. Rojname, Kovar û pirtûk bi awayekî zaf û berbiçav hatin çap û belavkirin. Bo cara yekemîn şanoya Kurdî ku êş, kul û elemên Kurdan dida xuyakirin, hate nîşandan. **Arteşa neteweyî ya Kurdistanê** bi navê **Pêşmerge** û bi kincên leşkerî hate pêkanîn û erkê parastina bidesxistiyên Komarê pê hate sipartin. Her wiha di Komara Kurdistanê de, bo cara yekemîn borseya xwendinê ji bo Komek ji şagirdên Kurd hate wergirtin û ji Yekîtiya Soviyeta wê demê re hatin şandin.

Di Komara Kurdistanê de jinan rêxistina siyasî ya taybet bi xwe pêk anîn û bi awayekî xuya û zaf xebat û çalakiyên siyasî û civakî meşandin. Di wî serdemî de bû ku Yekîtiya Ciwanên Demokrat ya Kurdistana Îranê pêk hat û ciwanên Kurdistanê bi awayekî çeleng di qada siyasî ya Kurdistanê de nîşan dan. Bi giştî, Komara Kurdistanê bi van gavên Lezgîn, ji bo bêtir nasandina xwe di warê siyasî û berfirehkirina çarçoveeya desthilata nîştimanî û hevkarîkirin bi tevgera rizgarîxwaz ya gelê Kurd re û kombûna welatparêzên Kurd li dora wê Komarê û pêşdebirina çanda demokrasîxwazî û dadperweriyê, aramî û rihetî ji desthilata dîktator ya dewleta navendî a Îranê û neyarên azadî, demokrasî û tevgera azadîxwazane ya neteweyên Îranê re têk da.

Aqibet pêka komployeke nemirovane ya di pêş de diyarîkirî de, her du Komarên Kurdistanê û Azerbaycanê yek li pey yekê ketin ber êrîşa hêzên rejîma dîktator ya Paşatiya Îranê û pir hovane ji nav birin û careke din diktatorî bi ser Îranê de zal bû û tevgera azadîxwazane ya neteweyên Îranê hate tepeserkirin.

**Hevalên hêja!**

Li ser pêkhatin û kar û tekoşîna Komara Kurdistanê û canemergbûna yekemîn Komara demokratîk ya Kurdan gelek kes ji şarezayên warê siyasî û dîrokî lêkolîn kirine û li ser vê destkevta neteweyî û dîrokî bîr û ramana xwe dane xuyakirin, serbarê vê çendê ku ev destkevte bilind û hêja nirxandine, basa mezinahiya kesayetiya Pêşewa Qazî Mihemed, Serok Komarê Kurdistanê kirine, hiloşîna Komara Kurdistanê bi van sedemane zanîne û bi vî awayî qala wan kirine:

Vekişandina hêzên hevalbend, nebûna eniyeke hevgirtî ya berçav a siyasî ji bo parastina bidestxistiyên tevgera azadîxwaz ya Îranê, ne wekheviya hêzên Kurdistanê tevî hêzên dewleta navendî, liberçavnegirtina egera êrîşa leşkerî, nebûna amadekariyan ji bo berbirûbûn tevî arteşa Îranê û guhertina fakterên hundirîn û navdewletî bi qazancê dewleta navendî.

**Hevalên qedirgiran!**

Her wekî pêkhatina Komara Kurdistanê weke semboleke neteweyî ji bo hemû xortên Kurd cihê rûmetê bû, hiloşîna Komara Kurdistanê jî ji tev welatparêzên Kurd re karesateke nexweş û jibîrnekirî bû. Dujminên Kurdan li ser vê baweriyê bûn, bi sernixûniya vê desthilata siyasî û neteweyî dê bikarin tevgera rizgarîxwaz ya Kurd bo herdem biperiçqînin û nahêlin bo careke din pê bigire. Lê berevajî xewnên wan, PDK Îranê ji bo xebateke siyasî, şoreşvanî û berdewam xwe organîze kir. Xabeteke şoreşgerane mil bi milê hêzên siyasî û pêşketinxwaz yên Îranê ji bo hilweşandina rejîma dîktator ya Mihemedriza Şah û anîne ser kara sîstemeke demokratîk û bidestveanîna armancên pîroz yên gelê Kurd domand. Di encama xebata berfireh ya gelên Îranê de, rejîma dîktatorî hiloşiya û desthilata Paşatiyê gor bi gor bû.

Piştî serkevtina şoreşa gelên Îranê, gelê Kurd hêvîdar bû bigihîje azadî, demokrasî û mafên xwe ên neteweyî û di bin siya bidestxistiyên şoreşê de seh bi azadî û serbestiyê bike. Lê mixabin hinde neçû, komek Melayên derfetperwer ji merema olî ya xelkê mifaheke nebaş standin û rêbaza siyasî ya şoreşê bi pêkanîna rejîma Komara Îslamî, ji rêya rastîn derxist û dubare bi awayekî din dîktatorî bi ser gelên Îranê yên têhniyê azadiyê yên sepandin û bi meşandina siyaseta kevnepesertane, kêmtirîn derfet ji bo neteweyên Îranê nehêlan heya bigihîjin mafên xwe.

PDK Îranê ji bo bidestveanîna mafên berheq yên gelê Kurd hewleke zaf da ku ji rêya siyasî û aştîxwezane ve pirsgirêka Kurd çareser bike. Lê helwesta rêberiya şerxwez ya rejîma Îslamî ya Îranê berevajî van helwestên siyasî yên partiya me bûn û bi vê çendê jî nerawesta, di Kurdistanê de dest da fitne û têkderiyê û di dawiyê de jî "Fetwa" Cîhadê bo ser gelê Kurd ji aliyê şexsê Xomeynî ve hate derkirin. Şereke bixwîn û neheq di Kurdistanê de pêk anî û bi hezaran kes ji rêber, endam, Kadro û Pêşmergeyên qehreman yên PDK Îranê jî di vî şerê giran û bixwîn de di pêxema armancên gelê Kurd de jiyana xwe gorî kirin. Rejîma Komara Îslamî tenê ji bo neteweya Kurd maya kul, êş û eleman nebû, belkî ji bo tevaya neteweyên Îranê biyom bû û şereke 8 salî tevî Îraqê bi armanca şandina şoreşa Îslamî ji bo derve dest pê kir û bû sedema kavilkirin û wêranbûna welatê me û bi sedan hezar kes ji xortên neteweyên Îranê jî bûne goriyên wî şerê bêencam. Îdamên xortên azadîxwez yên neteweyên Îranê di girtîxaneyên rejîmê de bi tak û bikom û terorkirina rêberên siyasî û nemaze dehan bûyerên giran û nexweş weke kuştinên rêzokî, tepeserkirina bêrehmane ya xwenîşandanên xwendekarî û kedkarî û xebata azadîxwazane ya jinan, beşek ji kiryarên ne

mirovane yên vê rejîmê ne. Her ev siyaseta dijî mirovî yê bûye sebebê vê çendê ku berdewam ji aliyê kom û komeleyên mirovhez ên navneteweyî ve were şermezarkirin û roj li pey rojê di civaka navdewletî de were perawêzkirin û serokên rejîmê bi domandina van siyasetane, çarenivîsa welatê Îranê ber bi rewş û qonaxeke nediyar û cihê tirsê dibin.

**Xûşk û birayên rêzdar!**

Rejîma Komara Îslamî ya Îranê niha ji bo tu aliyeke siyasî yê berpirsiyar û mirovhez şik û guman nehêlaye ku nikare kêmtirîn gavan ji bo dabînkirina azadî û demokrasiyê û çareserkirina mafên neteweyî yên gelên Îranê bavêje, bi taybet piştî hatine ser kar a Mehmûd Ehmedînejad wekî Serok Komar, siyasetên rejîmê eşkeretir bûn û bêperde dimeşin.

Rejîm bi awayekî bêrehmane li ser serkut, qirkirin, tund û tûjî, girtin, binçavkirin û darvekirina xortên azadîxwaz yên neteweyên mafxwarî yên Îranê berdewam e, siyaseta sansor, qedexekirin û daxistina rojnameyan û girtina rojnamevanan didomîne û niha bi dehan rojnamevan di girtîxaneyên rejîmê de di rewşên pir dijwar de dijîn.

Binpêkirina mafên jinan her weke berê berdewam e û berpirsiyarên rejîmê kêmtirîn derfet û delîveyê didin jinan ku bi awayekî hêja û jêhatî di birêvebirina welat û xebata siyasî û civakî de beşdariyê bikin.

Parek ji xwendekar û ciwanan jî di bin siya vê rejîmê de rastî bêhêvîbûnê û gef û metirsiya tûşbûn bi madeyên bêhişker bûne û berçêla wan girtiye. Betalî û bêkarî û giraniyê civatên xelkê rastî gelek dijwariyan kiriye, rejîm li hember daxwaziyên xelkê de nikare bersivder be û rastî gelek asteng û pirsgirêkan bûye. Xwenîşandanên xelkê bajarên Îranê û nemaze xwepêşandanên bajarên Kurdistanê û berbirûbûna vê dawiyê ya xelkê bajarê Seqizê mînaka vê kirîzê ye ku rastî rejîmê hatiye.

Her bi sedema van arîşe û pirsgirêkên rejîmê roj bi rojê bawerî û hitbara zêdetir ya xelkê ji dest dide û ji civatên xelkê dûr dikeve. Di bi nav hilbijartinên gera sêyem ya Şêwrên Gund û Bajaran û gera çaran ya Meclîsa "Xibregan" (bijarte) a Rêberî de ku di meha Sermaweza îsal de hatin lidarxistin, serbarê vê çendê ku rejîmê bi hemû awayekê hewil da xelkek zaf beşdariyê di wan hilbijartinan de bike û tevaya dezgeh û organên rejîmê ji bo pêkanîna armanc û miramên wan cehdeke zaf û berfireh didan, lê hişyarî û biwêriya xelkê careke din ji rejîmê re da xuyakirin ku nikare ji vê çendê bêtir siyasetên xwe yên şaş û çewt bidomîne. Bi taybet di Kurdistanê de xelkê azadîxwaz û welatparêz yê Kurd ji bangewaza polîtbîroya PDK Îranê ku di vê derheqê de hatibû belavkirin, pêşwazî kirin û bi rejîmê nîşan dan, pirsgirêka Kurd gelek ji vê çendê girîngtir û mezintir e ku dewlet bikare bi wî alî rabikêşîne ku armanca wê ye û peyrewiyê ji siyasetên wê rejîmê bikin.

Rejîma Komara Îslamî ya Îranê, li ser siyaseta maytêkirin di kar û barên hundir yên welatan û piştgirîkirin ji terorîzmê berdewam e. Di şerê navbera Îsrailê û Hizbulaha Lubnanê de piştevanî ji Hizbulahê kir. Li Filistînê alîkariyê ji Partiya Hemasê re dide û bi hemû awayekê cehd û hewlê dide dijminatiyê tevî prosesa aştiya Rojhilata Navîn û pirsa aştiyê di navbera Filistîn û Îsrailê de bike. Li Îraqê bi awayekî eşkere hevkariyê dide aliyên terorîst û çek û teqemeniyê ji bo terorîstan dişîne û ji aliyê hêzên Sipaha Pasdaran ve tên perwerdekirin. Bi awayekî gelmperî vê rejîmê welatê Îranê yê kiriye penageh û veşartgehek ji bi terorîst û serokên wan.

Her di doma siyaseta terorîstî ya Komara Îslamî ya Îranê de, piştî 12 salan vekolîn li ser teqandina Navenda Çandî ya Cihûyan li Bajarê "Buenos Aires", paytexta welatê Arjantînê di sala 1994'an de, aqibet dadwerê dadgeha Federal ya Arjantînê di bervar 11'ê Çiriya Paşîn 2006'an de hukmê girtina Haşimî Refsencanî û 8 kesên din ji rayedarên Komara Îslamî ya Îranê derkir.

Ev biryare jî weke hukmê dadgeha Mîkonosê ku di roja 10'ê Avrîla sala 1997'an ji aliyê dadgeha welatê Almanya ve derheq terorkirina Dr. Sadiq Şerefkendî û hevalên wî hate derkirin û serokên Komara Îslamî ya Îranê weke gunehbar nasand û eva belgeyek din ya zindî û eşkere ji bo terorîstbûna rejîmê da xuyakirin û bêguman jî heke pêvajoya lêkolînên ji aliyê dezgehên dadê û ewlekariya welatên din li ser kiryarên terorîstî yên Îranê berdewam be, dê derkeve holê ku rejîma Komara Îslamî ya Îranê çavkaniya tevahiya wan cinayetane ye û di hemû wan terorane de aliyê sereke ye û eşkere dibe ku rêberên vê rejîmê welatê Îranê yê kirine banka terorîzmê.

Rejîm serbarê domandina van siyasetane, niha mijûlê gihîştin bi projekteke bixetertir e, ew jî berdewambûna wê li ser siyaseta bidestxistina çekên Etomî û komkuj e. Serbarê vê çendê ku çendîn sal e ji aliyê Ajansa Vejena Etomê ya Navneteweyî, Rêxistina Neteweyên Yekbûyî û Wezîrên Karê Derve yên YE'ê û gelek kom û komeleyên din ên navneteweyî, hewl û bizavên dîplomatîk hatine dayîn heya rejîma Îslamî ya Îranê dest ji meyandina Uraniyûmê berde û di çarçoveya qanûnên navneteweyî de bi vê pirsê re tevbigere. Lê di heyamê van çend salane de, kêmtirîn nirx ji van hewildanên dîplomatîk re neda û li ser siyaset û polîtîkayên xwe biîsrar bû, heta aqibet Konseya Ewlekarî ya RNY' roja 23.12.2006'an de birayar 1737'an bi dengdaneke giştî, her 15 dengên endamên daîm yên Konseya Ewlekariyê pejirand. Li gorî vê biryarê, şandina her cure alev û amûrekê ku têkildarê bernameya Etomî ya Îranê bibe, qedexe ye. Her ev biryar hişyariyê dide Komara Îslamî ya Îranê, heke heta 2 mehên din zaxkirina Uraniyûmê nerawestîne, pêka qanûnê Destûra RNY'ê dê berbirûyê cezayên zêdetir di warê aborî û pêwendiyên dîplomatîk û veguhastin û hatin û çûnê de bibe. Li gor wê biryarê dê dest bi ser heyîna wan rêxistin û kesan jî ku bi dûr ji çavdêrî û zêrevaniya AVEN ku di projeyên Etomî yan mûşekçêkirina Îranê de beşdariyê bikin, bihê girtin.

Biryarnameya hejmar 1737'an ya Konseya Ewlekarî ya RNY'ê ya li ser rejîma Îranê, ji çend aliyan cihê baldan û lênihêrînê ye:

Yekem, ev dengdana giştî ya navneteweyî vê çendê diselimîne ku **hewar hewara** rêberên Komara îslamî li ser siyaseya navdewletî tu bandorek nebûye.

Duyem, Ev dengdana giştî ya navneteweyî di warê siyasî û dîplomasiyê de vê çendê diselimîne ku tev aliyên xwedî biryar gihîştin vê encamê ku ev rejîme ji bo aştî û tenahiya navneteweyî cihê tirs û xeterê ye, rejîmek ku bi eşkere gefa nemanê ji hebûna welateke endamê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî dike, projektên wê yên Etomî nikare armancên aştîxwezane li pişde hebe.

**Hevalên hêja!**

Her wekî hûn dibînin ev rejîme bi tevahî ji aliyê welatên pêşverû ve hitbara xwe ji dets daye û bi domandina siyaseta tevxwezane û piştgirîkirin ji terorîzmê nikare di çarçoveya zagonên navdewletî û têkiliyên dîplomatîk de ber bi aliyekê ve biçe ku xizmetê bi aştî û tenahiyê bike û nirxên mirovahiyê biparêze.

Bi xweşî ve bi ser siyasetên Amerîka û çawaniya berbirûbûn tevî terorîzm û liv û lebat bi welatên cîran ên Îraqê hate belavkirin. Naveroka ew gelaleyê berevajî wan armancan bû ku gelên Îraqê û nemaze gelê Kurd jêre xebat kirine û paşdekişaneke siyasî pêre xuya bû, di pêwendî tevî wan pirensîpên ku Amerîka û hêzên hevalbend di pirosesa azadiya Îraqê de girîngî didanê. Bi xweşî ve Serokatiya Herêma Kurdistanê piştî nîqaşkirin li ser daxwaziyên Kurdan û parastina destketên proseya azadiya Îraqa Federal tekez kir û tevî îdareya siyasî ya DYA'ê û hevalbendan kete gotûbêjê û encama ew gelalê û bandora xirab ya wê li ser pêvajoya demokrasîxwaziya herêmê û tenahiya Îraqê, xiste ber dîtin û raya wan. Serbarê vê çendê ew gelalê hate redkirin, lê ji bo gelên Îraqê û bi taybet ji bo Serokatiya siyasî ya Kurd hişyarkirinek bû. Bona vê yekê ku di şîrove û helwestên xwe ên siyasî de ji bo parastina berjewendiyên Kurdan gavên bibandortir bavêjin û ji ceribînên Komara Kurdistanê û tevgerên din mifahê bistîne û dîplomasiyekê bikar bînin ku vêc û berjewendiyên gelê Kurd di pêşerojê de çêtir biparêzin.

Li pey belavbûna vê gelaleyê û helwesta siyasî ya rêberên Hikûmeta Îraqa Federal û Serokatiya Herêma Kurdistanê bû ku Corc Buş Serok Komarê DYA'ê stratejiya nû ya Amerîkayê derbarê Îraqê û deverê de belav kir. Li ser siyasetên Amerîkayê ji bo parastina bidestxitinên prosesa azadiya Îraqê û parastina serweriya Hikûmeta Îraqa Federal û xebat li dijî terorîzmê tekez kir û hişyarî da dewletên Îranê û Sûriyê ku ji vê çendê zêdetir keys û derfet ji wan re nahê dayîn dest bavêjin nava kar û barên Îraq û alîkariyê bi girûpên terorîstî yên Îraqê û herêmê bikin û rewşa ewlehiyê tevlîhev bikin. Bêguman ev siyaseta jî dê li ser prosesa demokrasîxwaziya Rojhilata Navîn bandor hebe û faktereke karîgertir jî dibe li ser tevgera azadîxwaz ya Kurd bi giştî.

Her ev bandore jî ye ku li Sûriyê û Turkiyê jî tevgera Kurd bêtir ji caran xurt bûye û yê ketiye ber çavan. Niha bi awayekî fermî bas ji pirsgirêka Kurd û nasnameya neteweyî dikin û di paytextên xwe de derfeta pêkanîna civîn û konferansên cur bi cur di vê derheqê de didin. Bi giştî pêvajoya guhertinên siyasî ên herêmê di berjewendiya tevgera rizgarîxwaz ya Kurd de ye û mizgêniya pêşerojeke ronahî dide me.

**Xûşkû birayên birêz!**

PDK Îranê, li gorî siyaseta usûlî ya xwe di warê hundirîn de bi piştgirêdan bi viyan û îradeya gelê me û xebata xortên şoreşvan yên gel û hevxebatî bi hêzên siyasî yên Îranî û Kurdistanê û di asta navneteweyî de jî tevî pirosesa demokrasîxwaziya Rojhilata Navîn û xebat li dijî terorîzm û dîktatoriyê heya hiloşîna rejîma dîktator ya Komara Îslamî a Îranê, dê xebata azadîxwaziya gelê me bidomînin û di vê boneya pîroz de, em careke din tevî gelê Kurd li Kurdistana Îranê û bi canê paqij yê Pêşewa Qazî Mihemed, Serok Komarê Kurdistanê re, Dr. Qasimlo û Dr. Seîd û hemû şehîdên rêya bidestveanîna armancên Komara Kurdistanê, soz û peymanê nû dikin, ala Komara Kurdistanê dê her bilind rabigirin û bi xebat û tekoşîna berdewam gelê xwe bi serketinê û hêviyên wan bigehînin.

Silav li canê paqij yê avaker û birêveberên Komara Kurdistanê

Silav li Komara Kurdistanê

Silav li PDK Îranê, alahilgirê Komara Kurdistanê

Bihiloşe rejîma Komara Îslamî ya Îranê

Serkeve tevgera rixgarîxwaz ya gelên Îranê, di rêya pêkanîna Îraneke Demokratîk û Federal de

Careke din cejna we pîroz be û hemû rojên we cejin bibin.

# Rê Û Resma 61'emîn Salvegera Avabûna Komara Kurdistanê Li Navenda 3'ê Ya Kurdistanê Bi Coşeke Mezin Hate Pîrozkirin

Demjimêr 14:30'ê roja sêşem, 03.11.1385(23.01.2007)'an, li gor dema Kurdistanê, rê û resmeke hêja û berfireh bi beşdariya birêz Hesen Şerefî, Cîgirê Sekreterê Giştî, Kadro û Pêşmerge, Malbatên serbilind ên Pêşmergeyên PDK Îranê li Navenda 3'ê ya Kurdistanê, endam û alîgirên PDK Îranê yên niştecî yên bajarên Soran, Hewlêr û derdora wan û herwiha nûnerên partî û rêxistiên din ên parçeyên din ên Kurdistanê, li Navenda 3'ê ya Kurdistanê de birêve çû.

Rê û resm bi sirûda neteweyî ya "Ey Reqîb" ku ji aliyê Koma Hunerî a navenda navhatî ve hate pêşkêşkirin û ragirtina deqîqeyek bêdengî ji bo rêzgirtin û bi bîranîna canê paqij ên şehîdên rêya azadiya Kurd û Kurdistanê, dest pê bû.

Piştre berpirsê Navenda 3'ê ya Kurdistanê û endamê Komîteya Navendî ya PDK Îranê birêz Mihemedsalih Qadirî, ji aliyê tev Kadro û Pêşmergeyên navendê ve, bi xêrhatina mêvan û beşdarên rê û resmê kir.

Li doma rê û resmê de peyama Deftera Siyasî ya PDK Îranê ji aliyê birêz Hesen Şerefî, Cîgirê Sekreterê Giştî yê partiyê ve hate pêşkêşkirin.

Birêz Şerefî, di peyama han de bal kişande ser rewş û zirûfa avabûna Komara Kurdistanê, rol û pêşwaziya gelê Kurd di parçeyên din ê Kurdistanê li Komarê û parastina wê de û erkê keç û xortên Kurd derheq gihîştin bi armancên Komarê û damezrînerê wê û her wiha li ser xebata bêrawestan a gelê Kurd ji bo rizgarî û bidestveanîna mafê neteweyî yê gelê Kurd tekez kir.

Piştî bi dawîhatina axavtinên birêz Şerefî, bi hinceta rêzgirtin ji xebat û tekoşîna wî di nava refên PDK Îranê de, deste gulek ji aliyê birêz Selah Rehmanî, endamê PDK Îranê û nişteciyê Hewlêrê ve, jê re hate pêşkêşkirin.

Hêjayî gotinê ye ku di rê û resma han de partî û rêxistinên Kurdî li parçeyên din ên Kurdistanê weke:

- Partiya Sosyalîsta Kurdistanê(PSK).
- Partiya Demokrata Kurdistanê – Bakûr(PDK – Bakûr).
- Partiya Demokrata Kurdistanê(PDK Îraqê).
- Yekîtiya Niştîmanî ya Kurdistanê(YNK).
- Rêxistina Xebat a Kurdistana Îranê.
- Partiya Azadiya Kurdistanê(PAK).
- Partiya Lîberalên Kurdistana Rojava.

Beşdar bûn û peyamên pîrozbahiya xwe pêşkêşî endamên Navenda 3'ê û PDK Îranê kirin.

Her wiha hunermenda dengxweş a Kurd **Canê** jî beşdarê rê û resmê bû û bi dengê xwe rê û resm xemiland û coşeke pir germ da cejna neteweyî û dîrokî ya 61'emîn salvegera avakirina KomaraKurdistanê.

Aliyên din ên rê û resmê bi awayê jêr de hatî hatibûn xemilandin:

- Helbesta "Milet"(gel), ji aliyê birêz Xalid Resûlî, endamê PDK Îranê û nişteciyê kempa Kawe ya koçberên Kurdên Îranî li Hewlêrê ve hate pêşkêşkirin.
- Peyama YCDK Îranê – Komîteya Navenda 3'ê ya Kurdistanê ji aliyê birêz Enwer Mihemedzade.
- Peyama Yekîtiya "Qutabiyanî Kurdistan" ,ya zanîngeha Selahedîn.
- Peyama koçberên Kurd ên Îranî yên nişteciyê Kempa Kawe li Kurdistana Îraqê.
- Sirûda "2'ê Rêbendan" ji aliyê koma Hunerî ya Navenda 3'ê ya Kurdistanê.
- Pexşanek ji aliyê birêz Îdrîs Bilbasî ve, hate pêşkêşkirin.
- Peyama YJDK Îranê, ji aliyê Xatûna Hacer Qadir ve, hate pêşkêşkirin.
- Sirûda "Bijî Demokrat" ji aliyê koma hunerî ya Navenda mêvandar a rê û resmê ve, hate pêşkêşkirin.

Piştre bi hinceta rêzgirtin ji hunermenda mêvan û dengxweş **Canê** û her wiha pîrozbahiya salvegera ji dayîkbûna wê, birêz Rehîm Mengurî endamê cîgir yê Komîteya Navendî ua PDK Îranê bi nûneriya tev endam, Kadro û Pêşmergeyên Navenda 3'ê ya Kurdistanê, destegulek pêşkêşî wê hunermenda dengxweş kir.

Canê bi dengê xwe yê xweş û bi pêşkêşkirina çend strana, hevdem tevî pîrozkirina cejna 2'ê Rêbendanê, rê û resm bi coş anî.

Rê û resmê ku demjimêr 14:30'ê piştînîvro dest pê kiribû, seet 18:30'ê êvarî di nava xweşî û gerên govendê de dawî pê hat.

Hewce ye ku were gotin nişteciyên gundên derdor ên Navenda 3'ê ya Kurdistanê jî bi şandina peyamên cuda cuda salvegera 2'ê Rêbendanê û avabûna Komara Kurdistanê pîroz kirin.

**Nûçegihanê Agirî - Serbest Urmiye**











Şahiya 61'emîn salvegera Komara Kurdistanê li Stokhlm a Swêdê

## Cejna 61'emîn Salvegera Avabûna Komara Kurdistanê Li Kurdistanê û Derveyî Welat Bi Coşeke Mezin Hate Pîrozkirin

Bi hinceta 61'emîn salvegera avakirina Komara Demokratîk ya Kurdistanê di 22.01.1946'an de, piraniya bajarên Kurdistana Îranê bi awayekî nepenî û di rewşeke awarte ya leşkerî û ewlekariyê de gel ew cejna neteweyî bi awayên cu bi cur pîroz kirin. Her wiha li gelek welatên Ewropayê weke Swêd, Birîtanya, Fînland, Danmark Norwej û Amerîkayê û Kanadayê Komîteyên PDK Îranê bi awayekî berfireh 61'emîn salvegera ev cejna dîrokî ya Kurdan hate pîrozkirin. Şahiya li Swêdê gelek mezin û dîrokî bû û zêdetir ji 3500 tê de beşdar bûn.

Raporên berfireh di vê derbarê de li ser malpera me bixwînin:

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci.php

## Di Rê Û Resmeke Hêja Û Berfireh De Cejna 61'emîn Salvegera Avakirina Komara Kurdistanê Hate Pîrozkirin



Roja duşem, 22.01.2007'an, bi beşdariya berfireh û hestên pir xweş û şad yên endamên rêberiya PDK Îranê, Kadro û Pêşmerge, malbatên wan û mêvanên hêja yên bîranîna 61'emîn salvegera avakirina Komara Kurdistanê di 2'ê Rêbendana 1324(22.01.1946)'an, rê û resmeke hêja û berfireh di yek ji binkeyên Deftera Siyasî ya PDK Îranê hate lidarxistin.

Rê û rema han seet 11'ê sibê bi xwendina sirûda neteweyî ya **"Ey Reqîb"** û ragirtina deqîqeyekê bêdengî bo rêzgirtin ji canê paqij yê şehîdên rêya azadî û serbestiya Kurdistanê dest pê kir. Piştî komek ji Kadro û Pêşmergeyên partiyê ji Navenda 1 û 3 ya Kurdistanê û bajarê Hewlêrê ku bi vê boneya pîroz û dîrokî bi piyan xwe gehandibûn cihê cejnê, ji aliyê beşdarên rê û resmê ve bi çepikan hatin pêşwazîkirin.

Piştre Peyama Deftera Siyasî ya PDK Îranê ji aliyê birêz Mihemednezîf Qadirî, endamê Polîtbîroya PDK Îranê bi vê boneyê ve hate pêşkêşkirin.

Di doma beşên cejna 61'emîn salvegera avakirina Komara demokratîk ya Kurdistanê de bi vî awayî birêve çûn:

- Pêşkêşkirina sirûda "Heqîqet" bi awayê kors ji aliyê Koma Hunerî.
- Pêşkêşkirina Peyama Yekîtiya Jinên Demokrat ya Kurdistana Îranê ji aliyê Xûşka Ronak'ê ve.
- Xwendina Peyama Komîteya Birêveberiya Giştî ya Yekîtiya Ciwanên Dmeokrat ya Kurdistana Îranê ji aliyê birêz Loqman Ebdulazade, endamê Rêveber yê Komîteyê.
- Pêşkêşkirina sirûda "Be Kurdî dejîm" bi awayê kors ji aliyê Koma Hunerî.
- Pêşkêşkirina helbesteke bihest û dewlemend ya jinane ji aliyê Helbestvana navdar, Xatûna **Nahîd Husênî.**
- Pêşkêşkirina sirûda "2'ê Rêbendanê" ji aliyê ciwanên Pêşmerge: Kekê Emîr Rehmetî û Hamid Çaç ve.
- Werzişvan Kekê Rehîm Ehmedîpûr ku bi vê boneyê di navbera bajaroka Teq Teq heya Binkeya Deftera Siyasî ya PDK Îranê (42 Kîlometro) bezî bû, ji aliyê beşdarên cejna 61'emîn salvegera avakirina Komara Kurdistanê ve bi germî rêz jê hat giritn, ji aliyê Beşa Werzişî ya YCDK Îranê ve hate xelatkirin.
- Xwendina sê parçe helbestên neteweyî û şoreşgerî ji aliyê 3 zarokên delal.
- Pêşkêşkirina sirûdekê ji hêla ciwanên "Pezîriş"ê (Navenda Wergirtina Pêşmerge).
- Pêşkêşkirina strana "Kelî Mil berz" ji aliyê kekê Fireydûn Ezîmî ve.
- Pêşkêşkirina stranên folklor bi awayê sê kesî ji aliy Faroq Rostemî, Behroz Lutfî û Fıreydûn Ezîmî ve.
- Pêşkêşkirina çend dîmenên bedew û xweşik yên govenda Kurdî ji aliyê Koma Gevendê ya "HETAW"ê ve.

Hêjayî gotinê ye, bi dîlan û govendê ji aliyê beşdaran ve, seet 14'ê piştnîvroyê di nava xweşî û şadiya zaf rê û resma rêzgirin ji bîranîna 61'emîn salvegera avakirina Komara Kurdistanê dawî pê hat.

## Gerek Kurt Di Dîrokê De ...

**Amadekar: Nûredîn Sofîzade**

**16.01.1979:** Di encama serhildana gelên Îranê li dijî rejîma Pehlewî de, Riza Şah li Îranê revî û çû bo welatê Misrê.

**17.01.1992:** Destpêkirina şerê duyem yê xelîcê (Kendaw) bi serokatiya Amerîka, 33 welatên hevalbend li dijî hikûmeta Îraqê, hatne Xelîcê û vî şerî 40 rojan dom kir, serencam hêzên Îraqê li Kuweytê vekişiyan.

**18.01.1986:** Li dirêjiya şerê Îran û Îraqê, balafirên rejîma Îraqê bajarê "Sine" bombaran kirin û di dawiyê de hejmarek ji xelkê sivîl şehîd û birîndar bûn û zirareke zaf gihîşte xelkê.

**18.01.1988:** Pêkhatina Kongireya 8'an ya PDK Îranê.

**19.01.1989:** Baba Merdoxê Rohanî anku "Şîwa" koça dawiyê kir. Ew kesayetiyeke naskirî û olî yê Kurdistanê bû.

**20.01.1942:** Jeneralên Almana Nazî li civînekê de biryara vê yekê dan ku her 11 milyon Cihûyan bikujin, eva bû ku bûyera naskirî bi Holokastê afirandin.

**20.01.1981:** Rejîma Komara Îslamî ya Îranê piştî 444 rojan 52 kes ji karmendên Balyozxaneya Amerîkayê serbest berdan.

**20.01.1986:** Hunermendê navdar yê Kurd û stiranbêjê dengxweş, **Eyaz Zaxoyî** koça dawiyê kir.

**20.01.1995:** "Mehdî Bazirgan" yekemîn Serok Wezîrê piştî hatina ser şola Komara Îslamî di Îranê de koça dawiyê kir.

**21.01.1924:** Siyasetvan û Teorîsiyenê Komonîzmê, **Lenîn** koça dawiyê kir.

**21.01.1971:** Derçûna yekemîn hejmara dewra niha ya Rojnameya KURDİSTAN'ê.

**21.01.2002:** Corc Buş, Serok Komarê Amerîkayê 3 welatên Îran, Îraq û Kureya Bakûr weke hêla şeraretê hesibandin.

**22.01.1946:** Avabûna Komara Kurdistanê li bajara Mehabadê bi serokatiya Pêşewa Qazî Mihemed rêberê PDK Îranê. Wê Komarê karî 11 mehan serwerî û azadiyê bo gelê Kurd bîne.

**22.01.1984:** Pêkhatina Kongireya 6'an ya PDK Îranê û pejirandina Sosyalîzma Demokratîk weke armanca paşeroja partiyê bi pişikdariya 230 nûneran.

**23.01.1947:** Salek û rojekê piştî avabûna Komara Kurdistanê, Pêşewa û hevalên vî bi îdamê hatine mehkûmkirin û 66 rojan piştî hingê li Çarçiraya bajarê Mehabadê hatne îdamkirin.

**23.01.1999:** Hunermendê Stiranbêj **Mihemedê Mamlê** Xelkê bajarê Mehabadê koça dawiyê kir.

**24.01.1965:** Siyasetvanê navdar yê Birîtaniyayê "Winston Çirçîl" koça dawiyê kir.

**24.01.1981:** Mamosta **Elî Merdan** hunermendê dengxweş koça dawiyê kir.

**25.01.1923:** Rêberê şoreşvan **Simkoyê Şikak** serdana bajarê Silêmaniyê kir û gelek bi germî ji aliyê Şêx Mehmûdê Hefîd ve hate pêşwazîkirin.

**25.01.1980:** Piştî Şoreşa gelên Îranê û hatina ser şola Komara Îslamî, yekemîn hilbijartina Serok Komariyê bi rêve çû û "Ebulhesen Benîsedir" hate hilbijartin.

**25.01.1985:** Pêşmergên hêza "Bîstûn" û "Ezîz Yosifî" her du paygehên gundê Kesnezanê dane ber êrîşa xwe û dehan kes ji hêzên rejîmê kuştin, mixabin di wî şerî de 4 Pêşmerge bi navên **Rehîm Subhanî**, **Arif Xosrewî**, **Îbrahîm Rizayî** û **Feyzula Tado** şahîd bûn.

**26.01.1983:** Hêzên cinayetkar ên rejîma Komara Îslamî ya Îranê li dirêjiya cinayetên xwe de xelkê bêguneh yê gundên "**Qeregul**, **Sevzê**, **Serçinar**" li devera Çemê Mecîdxan ser bi bajarê Mehabadê qir kirin ku di encam de dehan kesên bêguneh şahîd bûn.

**26.01.1985:** Hêzên Komeleya Komonîst êrîş kirine ser meqerên Hêza **Şaho** ku mixabin 19 Pêşmergên PDK Îranê şehîdkirin.

**27.01.1973:** Piştî heyameke dirêj, dawîhatina şerê Wiyetnamê hate ragihandin.

**28.01.1945:** Leşkerên Yekîtiya Soviyetê di êrîşekê de welatê Lehistanê girtin û hêzên Almaniya li wir vekişiyan û di girtîgehekê de pitir ji 5000 Cihû ji mirinê xilas bûn.

**30.01.1985:** Yek ji fermanderê PDK Îranê bi navê **Resûl Azurde** tevî Pêşmergeyeke din bi navê **Ezîz Ebdulapûr** di şer tevî hêzên rejîmê de li devera Nestan a ser bi bajarê Rebetê şehîd bûn.

# PIŞTGIRIYA KURDÊN ROJHILAT

**Lokman Polat**

Kurdistan derveyê îrada kurdan parçe bûye, bûye çar perçe û di bin desthilatdariya Tirk, Faris û Erebên Îraq û Sûriyê de maye. Niha parçeyeke Kurdistanê, anku Başurê Kurdistanê azad bûye. Li gor bîr û raya min vêca dora azadbûna Rojhilatê Kurdistanê ye. Bi texmîna min dê Kurdistana rojhilat û başûrê biçûk ê Kurdistanê azad bibe û herî dawî jî dê bakurê Kurdistanê bigîşe azadiya xwe.

Kurd yek milet – netewe- ne û ji bo azadiya gel û rizgariya welat pêwîstî bi yekîtî, hevkarî, piştgirî û destbiratiya kurdên her çar perçan heye. Serokên kurdan, kadirên siyasî yên pêşevayên kurdan di pratîkê de helwesta hevkariyê, piştgirê nîşan dane û kurdên her çar parçeyên Kurdistanê di nav pêvajoya dîrokê de bi hev re bûne alîkar.

Di damezrandina Komara Kurdistanê de, serok Mistefa Barzaniyê nemir û hinek kadirên siyasî yên bakurê Kurdistanê – herwekî Ekrem û Qadrî Cemîl Paşa – li cem serokê nemir Qazî Mihemed cih girtine û piştgirî kirine. Kurdên siyasî yên Bakurê Kurdistanê herdem piştgiriya Başûrê Kurdistanê kirine û hinek kurdên siyasî yên Bakurê Kurdistanê di dema têkçûna sazûmana Şahê Îranê de û paşê destpêkirina şerê çekdarî li dijê rejîma Xumeynî de, li cem Partiya Demokrat a Kurdistanê cih girtin, piştgirî kirin.

Di sala 1980-yî de li Tirkiyê darbeya leşkerî ya faşîst pêk hat. Gelek kurdên şoreşger û welatparêz ji alî hêzên leşkerî yên dagirkerên dewleta faşîst a tirk ve hatin girtin û kuştin. Di işkencexaneyan de gelek kurd şehîd ketin, seqet bûn, birîndar bûn. Wê demê hinek kurdên siyasî ji bo neyên girtin, derbasê rojhilatê Kurdistanê bûn û xwe spartin Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê. Serok Qasimloyê nemir ew dem digot "Deriyê me ji biraderên me yên Kurdistana Bakur re vekiriye. Em bi hemû îmkanên xwe amadene ku piştgiriya birayên xwe yên Bakurê Kurdistanê bikin. Em amade ne ku wan weke çavên xwe biparêzin."

Ez bi xwe jî wê demê, anku di dema salên heştêyî de ji ber zilma dewleta dagirker a leşkerî ya tirka reviyam û çûm Rojhilatê Kurdistanê cem Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê. Ez bi hevalên xwe yên siyasî û rêxistinî ve demeke li meqerên Partiya Demokrat man û paşî ji wir vegeriyam Bakurê Kurdistanê. Ez gelek kadirên siyasî yên Partiya Demokrat û herweha Pêşmergeyên qehraman – leheng – yên Hizba Demokrat nas dikim û ji hemûyan re rêz û hurmeteke bêpayan nîşan didim. Ez ji Partiya Demokrat gelek hez dikim û heta niha ji bo piştgiriya çalakiyên Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, ji bo hevkarî û alîkariyê çi ji destê min hatiye, min pêk aniye û ez beşdarê hemû çalakiyên ku wan pêk anîne, bûme.

Di 13-ê vê mehê de li Stokholmê şeva bîranîna Komara Kurdistanê ya li Mehabadê çêbû. Ez bi xwe jî çûm û beşdarê şevê bûm. Şev baş bû, qelebalix bû, lê çi heyf ku hejmara kurdên bakur yên beşdar pir hindik bû. Piraniya kurdên ku hatibûn şevê, kurdên rojhilat bû û piştî wan piranî kurdên başûr bû. Kurdên bakur û başûrê biçuk – kurdên bin xetê- pir û pir hindik bûn û ez ji vê rewşê gelek aciz bûm. Dil dixwest ku gelek kurdên bakur beşdarê şeva bîranîna Komara Kurdistanê bibin. Lêbelê kurdên bakur nehatibûn û beşdar nebûbûn.

Min di şevê de çend kurdên bakur dît û ji wan pirsî, gelo çima kurdên bakur nehatine şevê? Her yek ji wan gelek sedem gotin, lê tu sedem nikare bibe sebeb ku kurdên bakur neyên şevê û piştgiriya kurdên rojhilat nekin. Weke partî û rêxistin, ji bilî PKK-ê hemû partî û rêxistinên kurdên bakur piştgiriya kurdên rojhilat dikin. Ji xwe ev şeva bîranîna Komara Kurdistanê ji aliyê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê û hevkariya partî û rêxistinên her çar parçeyên Kurdistanê hatibû amadekirin. Lêbelê çi heyf ku alîgir û terefdarên partî û rêxistinên kurdên bakur jî bi tevahî nehatibûn. Divê partî û rêxistinên bakurê Kurdistanê bala endam û alîgirên xwe bikşînin ku ew bi tevahê beşdarê çalakiyên weha bibin.



Kurdên bakurê Kurdistanê ji hêla hest û ruhê kurdayetiyê ve qels in. Piraniya kurdên bakur di bin bangora partiyeke ku xwe dûrê hest û ruhê kurdayetiyê ve dide, de mane. Ew teng difikirin û loma jî ew tenê di çalakiyên girûpî de amade dibin. Kurdê ku Kurdistanî nebe, mezin û fereh nefikire, biratiya kurdên çar parçeyan û herweha azadiya gel û rizgariya Kurdistanê neparêze, ew ji hêla hest û ruhê kurdperwerî ve lawaz dimîne û li hemberê tiştên ku kurdayetiyê, kurdperweriyê eleqeder dike, xemsar dimîne.

Helbet ji bo nebeşdarbûnê hinek sedem hene û gelek argumentên cuda têne gotin. Lê, sedem çi dibin bila bin, divê kurdên bakurê Kurdistanê bi helwesteke kurdperwerî, di pratîkê de piştgiriya çalakiyên kurdên rojhilat bikin.

# Komara Kurdistanê Û Girîngiya Wê

**Hemîd Muxtarî**

Sala 1945'an e, welatê Îranê ji bakûr û başûr ve ji aliyê hêzên biyaniyan ve hatiye dagîrkirin. Xelkê Îranê ji zilm û sitema Rizaxan westiyane û li pey mafên jidestçûyî yên xwe digerin û çav ji pêşerojê dikin.

Di vê navberê de, neteweya Kurd jî bi gelek derdan ve dinale û nerihet û nerazî ji salan ferq û cudahî, kuştin, îşkence, êş û azar û ... li pey qedereke nû digerin, belku aqibet bikarin rojekê bibine xwediyê pêşerojeke geş û xweş.

Di vê demê de pêşewayê miletê Kurd û rêberê PDK Îranê, Pêşewa Qazî Mihemed ku her di nava wî xelkê de ji dayîk bibû. Tevî vî xelkî jiyabû û tevî wan êş û elemek havpar ceribandibû, kire hawar û got: Bese zordarî, zilm dibe bi dawî were. "**Pileya herî dawî ya fesadê bikaranîna yasayan ji bo zilm û zordariyê ye. Ger neteweyek her armancekê serwetir ji armanca gehîştin bi azadiyê bizane, dê her tiştekê ji dest bide. Em mirina bi azadî ji bindestî û êxsîriyê çêtir û baştir dizanin**". Pêşewa Qazî Mihemed serkevtina giştî xelkê Îranê di demokrasiyê de didît. Vî sebeba herî bingehîn a paremayîna welat û xelkê Îranê di hebûna dîktatoriyê de didît û li ser vê bawerê bû ku rêya gehîştin bi azadiya rastîn xebat li dijî hêzên nerewa û dîktator e.



**Wêne: Dîmenek ji jinan di Komara Kurdistanê de**

Pêşewa Qazî Mihemed piştî damezirandina PDK Îranê di sala 1945'an xebata neteweya Kurd xiste di pêvajoyeke nû de. Çimku berî avabûna PDK Îranê gelê Kurd qet xwediyê partiyeke siyasî ya nûjen û xwedî bername û pirogiram nebûye û em dikarin bibêjin ku PDK Îranê di dîroka bizava netewa Kurd de yekemîn partî bûye ku piştî şehîdkirina Sekreterê wê ji nav neçûye û xebata xwe li dijî zordariyê û gehîştin bi armancên gelê Kurd her dom kiriye û îrorojê partiya herî sereke di nava giştî partiyên Îran û Kurdistanê de ye.

Piştî avabûna PDK Îranê, Pêşewa Qazî Mihemed di 2'ê Rêbendana sala 1324 (22.01.1945)'an de li meydana Çarçiraya bajarê Mehabadê de bi pişikdariya pitir ji dehan hezar kes ji xelkê her çar parên Kurdistanê, Komara Kurdistanê ragihand û bi vê hincetê pîrozbahî ji gişt xelkê Kurdistanê kir.

Herçend ku temenê Komara Kurdistanê kêm bû, lê her di vê heyama kêm de Komara Kurdistanê bi rêveberiya PDK Îranê karî bibe xwediyê gelek destkevtan ji bo gelê Kurd, bo mînak: Damezirandina arteşa netewî, hildana ala Kurdistanê, avakirina rêxistinên taybet bi jinan û ciwanan (YJDK Îranê û YCDK Îranê), avakirina çendîn dibistanên keç û kuran, avakirina xwendingeha şevane, wergerandina pirtûkan bo ser zimanê Kurdî, keç û kur, jin û mêr di dibistanan de hînê xwendin û nivîsandin bi zimanê Kurdî bûn, wan li ciyê wê çendê ku 6, 7 salan xwe mijûlê hînkirina zimanê Farsî bikin, di yek, du, mehan de Kurdî hîn bûn. Avakirina weşanxaneyekê herî baş û weşandina rojname û kovaran bi zimanê Kurdî. Damezirandina pirtûkxaneya giştî, sînema Kurdistan, radiyo Kurdistan û ... ku hemû destkevtên Komara Kurdistanê di vê heyamê 11 mehan de bûne. Divêt îşare bi vê çendê jî were kirin ku ew parên axa Kurdistanê ku li bin desthilatdariya Komara Kurdistanê de bûn, ciyên herî tenah û aram di gişt Îranê de bû. Ger mirov bixwaze basê gişt destkevtên Komara Kurdistanê bike, divêt çendîn pirtûk li ser were nivîsandin, lewma ez li vir dawiyê bi mijara xwe tînim û 2'ê Rêbendanê li gişt xelkê Kurdistanê pîroz dikin.

**Çavkanî: pirtûka "Qazî Mihemed û Cimhurî der Ayînê Esnad" Bêhzad Xoşhalî**

# KUŞTIN

ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com



Kuştin, heke ne parastina rewa ya nefsa canê mirov bi xwe be, komkujî ye. Komkujî jî, sûçê herî mezin û giran ê mirovatiyê ye.

Mixabin, mirovatî rojê çend caran dibe şahidê çend komkujiyên mirovî ku di bedena xwe de sed mirinên dijwar dijî.

Peywir û vatiniya her mirovê/a hestyar û pejnkar ew e ku li hemberî hemû cureyên kuştinê raweste û amûr û amrazên jiyanê derpêş bike. Lewre tu tiştê nikare bi qasî mafê jiyanê girîng û payedar bibe. Ji bilî wê, her tişt pile bi pile di bin sîwana jiyanê de dirb û dirûv digire.

Di 19'ê Befranbarê de li Stenbola Tirkiyê komkujiyek bêbext û bêwext pêk hat. Rojnmavanê hêja Hrant Dînk ê ku bi eslê xwe ermenî, belê bi hemû taybetiyên xwe wekî mirovekî mirovhez û navneteweyîparêz ji hêla ciwanekî hivdeh salî ve hate kuştin. Bi vê kuştinê re gelek bertek û nerazîbûnên girseyî pêk hatin. Û cara yekem bû ku ev komkujî li Tirkiyeyê ji hêla hemû kesên ku xwe mirov dihesibandin ve bi kerb û nelet hate şermezarkirin. Mirovên ku bi kuştina wî diêşiyan xwe berdan kolanan û li wî mirovê rewşenbîr, aştîxwaz û mirovhez xwedî derketin.

Pêşî ez bi xwe jî wekî mirovekî û peyre jî wekî kesekî ku kuştina her mirovî/ê wekî komkujiyeke mezin dihesibîne, dibêjim bila tu car tu kes neyê kuştin û pozê tu kesî bi xwîn nebe. Her ku mirovek tê kuştin (kî dibe bila bibe, çima, ji bo çi û li ku derê dibe bila bibe, zayend, nîjad, Ol û baweriya wî/wê çi dibe bila bibe) ji dil û hinavên min dilop dilop xwîn tê weravtin; hestiyên min wesle bi wesle têne mehandin; ez dibim nola nîv mirovî û taya mirinê bi cest û hestên min dikeve. Ji bo wê, sedem û encam çi dibe bila bibe, tu car naxwazim navê kuştinê bibihîsim. Lewre her ku dibim şahidê kuştinekê, şaneyek ji bedena min dirize; bi kurtayî wekî ku ez bi xwe bême kuştin, diêşim û dihecinim.

Îcar gava ku rojnamegerê hêja Hrant Dink hate kuştin, bi dest xwe re li mala me şîn û şiyan li dar ket û bêhemd hêstirên me bariyan. Ev giryan û şiyana me tenê ne ji ber kuştina mirovekî mirovhez bû; ji ber erzanbûn û hêsanbûna jiholêrakirina kesên bêrî û bêguneh bû. Ji pênûsê wî pê ve tu çeka wî tunebû. Di dilê wî de ji hezkirin, aştî û biratiyê pê ve, di mêjiyê wî de ji hizra dostanî, ahengdarî û mirovatiyê pê ve tu tişt tunebû…belê wekî kevokekî aştiyê ji xafil de bi sê guleyên kujende hate qetilkirin. Qetilkirina wî gelên Tirkiyeyê û mirovên dilsoz û dilovîn rakirin ser piyan. Ew mirovên dildar û aştîxwaz bi dirûşma "Em hemû ermenî ne ; em hemû Hrant in!" derketin kolanan û meşiyan.

Me bi malbatî di nav xwe de ew bûyer nîqaş dikir û xwe bi xwe digot: "Heke li welatekî kuştina ronakbîrekî bû be karekî ji sêrê û wekî kevneşopiyekê were dîtin, êdî dê kî bikaribe bi hawara gelên wî welatî ve were û wî ji nebaşî û tengasiyên vê dinê reha bike?" Ango, gelo kî dikare wê civaka ku bi şewq û ronahiya xwe re kufir bibe, ji karesat û babelotên bêyom rizgar bike? Bi ya min na. Lewre tu kes nikare civaka ku çira xwe bi destê xwe bitefîne, arasteyî ronayî û aramiyê bike. Ew ê her û her di nav reşayî û tarîtiya hezar salan de bigevize û di goristana civakan de bêdeng bitemire.

Di jiyana hin civakan de kuştin her gav wekî karekî asayî tê dîtin û kujer û êrîşkarên van welatan wekî leheng û wêrek têne binavkirin. Ji bo wê ye ku tu car serê mirovên van civakan ji cureyên kuştin, xwe kuştin û hevkuştinê safî nabe. Ji bo wê ye ku tu dost û yarenên van civakan nîn in. Ji bo wê ye ku tu car dijmin û neyarên van civakan ji dora wan xalî nabin…

Kuştin, bi çi mebest û egerê dibe bila bibe; têkçûn e. Pêşî têkçûna kujerê ku xwe li kuştinê girêdayî ye. Peyre têkçûna kesê/a ku alîkarî û piştgiriyê didiyê û wî/wê diparêze ye. Paşê têkçûna kesê/a ku kêfa wî/wê ji kuştinê re tê ye. Ev hemû nişaneyên neqencî û bêesliyê ne. Di jiyana komelayî ango di dîroka şarezahiyê de kuştin wekî komkujiyê tê bianvkirin. Û divê wisa be jî. Ji ber ku kuştina mirovekî/ê bi qasî kuştina tevê mirovahiyê şewat û dijwar e, Divê tu kes kêfa xwe ji kuştinê re neyne. Û divê tu kes xwe bi kuştina mirovan nexapîne. Çimkî kuştina mirovekî/ê bi qasî kuştina tevê mirovahiye sûçdarî û tawanbarî ye; belê jiyandina mirovekî/ê her wiha bi qasî jiyandina tevê mirovahiyê bêhnpakî û dilpakî ye.

Heta ku mirovahî bizrê jiyanê di hiş û mêjiyê xwe de venejînê nikare tovê kuştinê biqelihîne. Ji bo wê zayend, nîjad, netewe ol û baweriya mirov çi dibe bila bibe, divê her mirovek li hemberî hemû tewreyên kuştinên bêwext û bêbext raweste û jiyan û vejînên nûjen biafirîne.

## Kaniya Helbestan

# Pîrozbahî



Serbest Urmiye

Dûr li hembêza te
Biçûk û sava
Lorîkekê sêvî
Li hundir birîn
Pir ji dil xem
Ji ber nalîn û hêsirê çava
**Li kê pîroz kim**
salvegerê
Li çembera sînorên bi gur û hov
Çiqas jî binale dilê bi kul
Kes nabihîse ji dil
Dûrî te
**Li kê pîroz kim**
Dûr li hembêza te
Serma ye
Dicemidîne hêsirê çava
Dûr li siya te
Xedrê dike roj
Dişewitîne
Dil, henava
Tariye şev in
Nabînin çav
Rehma xwedê jî qe
Avrek çava bo nadî carê
Bilind nakî ser
Da bibînî ka ku
Lorîk dikişîne çi
Li dest
Rojê
Av û axê
Xedra xwedê
Dûrî te
**Li kê pîroz kim**
Ka li kurî tu
Bo xeyîtî
Carê ji min
Bo venakî hembêza xwe
Da ku bi ser
sînga te ser
Seh bikim ez
Rehma diyê
Carek jî be
Biborî li min
Aza bikî gerdenê
Dûrî te
**Li kê pîroz kim**
Dil birîndar a bê hêvî
Dûr li hembêza te
Çûn dilber û ..
Xeyîtîn ji dil
Şikandin def
Sil bûn mitrib
Xem û xeyal
Para dil in
Veke carê
Hembêza xwe
Bide avrek
Bi kena xwe
Da gorî kin
Sed weke Serbest
Çavnihêrê lêvên bi ken
Ser û dil
Dûrî te
Ser bi reş a şîn girêdayî
**Li kê pîroz kim**
Salvegerê

**Nivîskar û zimanzan, Samî Tan:**

# "Ez Bi Xwe Zêdebûna Zaravayan Wekî Astengiyekê Nabînim, Wekî Rengînî Û Zengîniyekê Dibînim"

***Xwendevanên hêja yên Agirî, me di vê hejmara rojnameya xwe de bi hewce zanî ku hinek derheq rewşa zimanê Kurdî û asteng û girêpêçkên hember pêşveçûna zimanê Kurdî û herwiha pêşeroja zimanê Kurdî bisekinin. Bo gengeşa û şirovekirina vê mijarê jî me hevpeyvînek bi zimanzan Samî Tan Serokê Enstîtoya Kurdî li Stenbolê çê kir. Niha jî kerem bikin em û hûn bi hevre vê hevpeyvînê bixwînin:***

**Samî Tan kî ye?**

Ez dikarim van tiştan bibêjim. Ez di sala 1965'an de li bajarê Semsûrê, navçeya Kolikê, gundê Axçeliyê hatime dinyayê, min xwendina xwe ya seretayî, navincî û amadehî li bajarê Mêrsînê biriye sêrî, li Beşa Dîrokê ya Zanîngeha Bogazîçî ya Stenbolê dest bi xwendina zanîngehê kiriye, lê min xwendina xwe nebiriye sêrî. Di sala 1993'yan de min li Rojnameya Welat dest bi xebatê kiriye, min li saziyên mîna Ozgur Ulke, Welatê Me, Azadiya Welat, Beşa Kurdî ya ajansa nûçeyan DÎHA'yê xebat kiriye.

Ji sala 1997'an vir de min bi awayekî çalak di nav xebatên Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê de jî cih girtiye. Hin caran wekî endam, pirî caran jî wekî endamê senatoyê min xebat kiriye, her wiha di kovara Enstîtuyê Zendê jî gotar û wergerên min hatine weşandin. Ji bilî wê ez yek ji avakarên Komeleya Nivîskarên Kurd a li Amedê me. Ez di rojnameya Azadiya Welat de hê jî hefteyê carekê dinivîsim, her wiha di kovar û malperên têvel de jî nivîsên min derdiçin.

Min ji sala 1997'an heta sala 2004'an wekî gerînende û koordînatorê Azadiya Welat xebat kir û tê de sergotar nivîsand. Yekemîn berhema min a li ser ziman "Waneyên Rêzimanê Kurmancî" di sala 2000'î de hate weşandin. Duyemîn pirtûka min ji gotarên min ên pêkenînî pêk dihat, di sala 2003'yan de hate çapkirin. Navê wê "Şer giran e, ne karê henekan e", min bi nasnavê Beranê Enîbeş nivîsandiye. Ji bilî wê min ligel Hasan Kaya, Zana Farqînî namilkeyek bo danasîna zimanê kurdî nivîsandiye, her wiha tevî Maşallah Dekak jî min namilkeyek li ser nûçegihaniya kurdî nivîsandiye. Ji bilî van min desteya amadekar a Rojên Wêjeyê li Diyarbekirê û konferansên ziman ên salên 2003, 2004 û 2006'an de cih girtiye. Pirtûka encamê ya Konferansa Zimên a sala 2004'an ji hêla min ve hatiye amadekirin. Duyemîn berhema min a li ser zimên di sala 2005'an de ji nav weşanên Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê derket. Navê wê "Rêziman û Rastnivîsa Zaravayê Kurmancî" ye. Ev du sal in, ez di Ensîtuya Kurdî ya Stenbolê de dixebitim. Ji avrêla sala 2005'an vir de jî serokatiya Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê dikim. Her wiha ez yek ji koordînatorên TZPKurdî me.

**Kekê Samî ji kerema xwe di destpêkê de ez dixwazim ku hûn hinek der heqê dîroka zimanê kurdî ji bo me biaxivin.**

- Mixabin li ser dîroka dûr a zimanê kurdî tu agahî û belgeyên zêde li ber destan nîn in. Ji ber ku welatê kurdan tim bûye warê şer û pevçûnên hêzên dagirker, belgeyên heyî hatine şewitandin, hinek belge jî di bin axê de ne, lê arkeologên me û derfetên arkeolojiyê nîn in ku wan derxin holê. Belgeya herî kevn helbesteke ku ji sedsala 7'an maye, ew jî qala wêrankariya artêşên îslamê dike û bi zaravayê hewramî ye.

Helbesta ku dibêje;

*Hozmizgan riman, atiran kujan*

**Hevpeyvîn: Dara Natiq**



Zimanzanê Kurd, Samî Tan

*Wêşan şardewe gewrey gewrekan*

*Zorker ereb kerdine Xapûr*
*Ginaw Paleyî heta Şarezûr*

*Şin û kenîkan we dîl beşîna*
*Mêrd azar tilî we rûy hiwêna*

*Rewişt zertuştir e manewe bêdes*
*Bezêka nêka Hormiz we hêwiç kes*[1]

Li gorî pirtûka bi navê "Elekrad fî Behdînan" a Enwer Mayî rûpala 196'an Dr. Şêrko Bilêç di bîranînên xwe de gotiye, rojhilatnas Fliyamînof qala berdenivîsekê kiriye ku li ser du beyt ji helbestên "Boraboz" hebûne, ew helbest ji mêjûya 330'ê berî Îsa maye. Lê ev belge bi xwe ango berdenivîs li ber destên me nîn e. Helbesta navborî bi kurmancî ye û bi vî rengî ye:

*Xwazdî ez to bi hev re bîn*
*Werdî bihîrîn kûtira bîn*
*Bi hîv ra hîrîn xurînî*
*Bangik dîn bi hîv ra narînî*[1]

Li gel vê yekê jî dîroka zimanê kurdî zêde nehatiye zelalkirin. Her wiha têkiliya di navbera zimanê kurdî û zimanên kevn ên îranî de jî tam nehatiye zelalkirin. Bo nimûne em rîş û koka kurdan digihînin medan, lê belê der barê zimanê medan de belge li ber destên me nîn in. Çend peyvên ku hene, navên cihan in, di zimanên din de hatine parastin, belgeyeke ji wî zimanî bi xwe li holê nîn e.

Niha li Kurdistanê bi sedan, bi hezaran şikeft hene ku tê de nivîsên dîrokî hene, lê kes neçûye, wêneyê wan nivîsan nekişandiye û ew deşîfre nekirine. Li aliyê di bin axê de gelek tiştên dîrokî hene, lê derfetên kurdan nîn in ku xebata akeolojîk bikin û dîroka zimanê kurdî zelal bikin.

Lê nemaze li başûrê Kurdistanê derfetên van xebatan derketine holê. Divê zanîngehên li vî parçeyê welêt di vî warî de kadroyan bigihînin û dest bavêjin vî warî. Her wiha li parçeyên din ên Kurdistanê jî li gorî derfetan di vî warî de pêwîst e xebat bêne kirin. Ligel vê yekê divê em li ser belgeyên miletên cîran; ereb, faris, tirk û rûsan xebatên kûr bikin, da ku belgeyên dîrokî yên der barê zimanê xwe derxin holê. Ev kar jî dikeve ser milê zanyarên kurd ên li Kurdistan û derveyî welêt.

**Gelo hûn zêdebûna zaravayên kurdî çawan dinirxînin?**

-Ez bi xwe zêdebûna zaravayan wekî astengiyekê nabînim, wekî rengînî û zengîniyekê dibînim. Lê ew yek hin caran bi xwe re hinek arîşeyan re jî tîne û gefan li yekîtiya neteweyî dixwe. Ji ber vê yekê divê kurd têkiliyên xwe xurt bikin, zaravayên kurdî ber bi hev werin, qet nebe pirsgirêka jihevfêmkirinê nemîne. Her kurdê/a welatparêz ji xwe re wekî peywir bibîne ku zaravayên din ên zimanê xwe hîn bibe. Ez bi xwe hîerarşiya di navbera ziman û zaravayan de napejirînim. Wate, tu ziman ji zimanekî din ne çêtir û pêşketîtir e, her wiha tu zarava jî ji yên din ne kêmtir û bêkêrtir e. Li ber kurdan du rê hene; heke kurd yekîtiya xwe ya neteweyî xurt bikin, danûstandinan bêyî ku sînorên dewletan li ber çavan bigirin, zêde bikin dê yekîtiya neteweyî pêk were, zarava ber bi hev werin û bi domana demê re zimanekî hevgirtî pêk were. Heger kurd xwe ji hev dûr bigirin, dê bi domana demê re her zarava bibe zimanek. Di vê navê de dê hinek zarava ji navê biçin.

**Çima me nekariye ku zimanekî standard yê kurdî çêbikin? Astengî û pirsgirêk çi ne?**

-Serê pêşîn divê em bizanin ku kêşeya zimanê yekgirtî kêşeyeke sext û dijwar e. Pêkhatina zaravayan berhema bi sedan, belkî

hezar salî ye. Lewre wisa bi hêsanî ji holê ranabin. Li aliyê din di qonaxa destpêka pêkhatina netewe-dewletan de zimanê yekgirtî bi awayekî, nemaze jî bi zora desthilatiyê pêk dihat, lê îro mirovahî hêdî hêdî ji vê qonaxê dûr dikeve. Êdî hebûna zarava û devokan wekî rengî û zengîniya zimanekî tê dîtin. Li Ewropayê zimanên xwecihî ji nû ve têne zindîkirin. Lewre bi baweriya min divê em jî lehçeyên zimanê xwe wekî dewlemendiyê bibînin, lê hewl bidin ku wan lehçeyan nêzî hev bikin da ku pirsgirêka ji hev fêmkirinê ji holê rabe. Ew jî bi xurtbûna danûstandina çê dibe.

**Bi raya we ji bo standadtkirina zimanê kurdî hewce ye ku çi gavek bêne avêtin?**

Min bersiva vê pirsê li jor daye, lê ez dîsa jî çend tiştan bibêjim. Serê pêşîn divê rewşenbîrên kurd dev ji hişmendiya parçe, hoz û eşîr û hizbî berdin, yekîtiya xwe xurt bikin. Divê berhemên kurdî li seranserê Kurdistanê bêne belavkirin. Saziyên sivîl (komele, sendîka, yekîtiyên nivîskaran, saziyên karsazan) divê li seranserî Kurdistanê xebatên hevpar bikin. Her wiha navgînên ragihandinê; rojname, kovar, radyo û tv, weşanên li ser înternetê divê Kurdistanî bin. Ev yek dê bingeha hevgirtina kurdan xurt bike û lehçe û devokên zimanê kurdî jî nêzî hev bike.

Serê pêşîn divê lehçeyên zimanê kurdî di nav xwe de yekgirtinekê pêk bînin, lê dema vê yekê dikin, aliyên hevpar ên bi lehçeyên din re li ber çavan bigirin. Berî her tiştî jî divê alfabe bibe yek, di mercên îro yên cîhanê de alfabeya herî baş a latînî ye. Heke ev gav bêne avêtin, dê bingeha zimanê yekgirtî çêbibe. Lê di pêkanîna zimanê yekgirtî de divê mirov ji pîvanên demokrasiyê dûr nekeve û nekeve şaşiya pişaftina hinek zaravayan bi darê zorê.

**Kîjan rastnivîsîn û zarava kurdî divêt bibe bingeha standard ya zimanê kurdî?**

-Niha sê lehçeyên kurdî; kurmancî, soranî û zazakî gav avêtine qada nivîskî. Soranî di asteke bilind de yekgirtina xwe pêk aniye, kurmancî ev nêzî bi sedan sal in ku bûye zimanê nivîskî, pê gelek berhem hatine nivîsandin. Kurmancî jî ji xebata Celadet Bedirxan û kovara Hawarê vir de, yekgirtina xwe ji sedî 80 pêk aniye. Zazakî ev 30 sal in di warê nivîskî de tê bikaranîn. Hewramî tevî ku lehçeyê herî qedîm ê kurdî ye jî, di warê nivîskî de qels û lawaz mabû, niha ew jî ber bi zindîbûnê ve diçe.

Divê ev yekgirtina navxweyî ya lehçeyan xurt bibe û lehçe jî bi zêdebûna danûstandinan nêzî hev bibin. Ez bi xwe li dijî wê yekê me ku zaravayek bingeh bê girtin û li ser wê bingehê zimanekî yekgirtî bê çêkirin. Ez dibêjim êdî mercên vê yekê nemane, jixwe hêzeke ku karibe vê yekê bike ango dewleteke yekgirtî ya kurdan jî nîn e. Li Başûr hinek ceribandin hene, lê bandora wan dê tenê li ser Başûr hebe, heke ew biryareke wiha bigirin, dê ji parçeyên din ên Kurdistanê dûr bikevin. Hejmareke mezin a kurdan bi zaravayê kurmanciya bakur dipeyive, kes nikare kurmanciya Başûr (soranî) li ser wan ferz bike, zimanekî çêkirî jî zêde bala kesî nakişîne. Niha li Bakur pirsgirêka me ya sereke parastin û bipêşvebirina kurmancî û zazakî ye, ne zimanê standart e.

**Nebûna zimanekî hevgirtî yê kurdî heya çi qasekê kariye li ser pêşveçûna çand û şaristaniyeta kurdan xwedî bandor be?**

-Zimanê yekgirtî berê ji bo gelan ne pêdiviyek bû, beşên civakê yên ku danûstandinên wan bi hev re xurt bûn, bi awayekî zimanekî ragihandinê ji xwe re diafirand. Pirsgirêka zimanê yekgirtî piştî derketina doza neteweyî û têkoşîna ji bo dewleta neteweyî bû pirsgirêk, lewre hebûna zaravayên cuda li ber pêşveçûna çand û şaristaniya kurdan nebû asteng.

Berevajî vê yekê êrîşên hêzên dagirker pêşî Kurdistan kire warê şer û pevçûna hêzên derveyî û Kurdistan wêran kir, piştre jî Kurdistan kete bin destê van hêzan. Vê yekê bandoreke neyînî li ser pêşketina civakî, aborî û çand kir. Sedema bingehîn a pêknehatina zimanê yekgirtî, dagirbûna Kurdistanê û parçebûna bazara neteweyî ye. Ji ber ku hêmaneke bingehîn a ku mercên zimanê yekgirtî pêk tîne, bazara neteweyî ye. Hêmanên din perwerdehî û navgînên ragihandinê ne.

**Hûn rola romannivîs û helbestvanên me yên kurd di dewlemendkirina zimanê kurdî de çawan dibînin?**

-Rist û rola wan di pêşketina zimanê kurdî de pir zêde ye. Nemaze jî helbesta klasîk bûye yek ji amûrên bingehîn ên parastin û pêşvebirina zimanê kurdî. Roman wekî ceşneke edebî hê nû bi pêş dikeve, lê dîsa jî xizmeteke baş ji bo zimanê kurdî dike. Mixabin nebûna perwerdehiya kurdî, dike ku zimanê nivîskî li nav civakê kêm belav bibe û xwendina berhemên kurdî zêde nebe. Ji ber vê yekê her wekî Ehmedê Xanî gotiye, "Bazara kurdî kesad e, ji qumaş re nîn e xerîdar". Ligel vê yekê jî romannivîs û helbestvanên kurd ji parastin û pêşketina zimanê kurdî de xizmeteke baş kiriye û hê jî dikin. Zimanê kurdî bi berhemên nûjen, ji qalibên kevneşopî ango civakeke çandyar derdikeve û dibe zimanekî civakeke bajarî. Wêjekarên kurd di dema nivîsandina berhemên xwe de ji qalib û şayesên zimanên din jî sûd wergirtiye, vê yekê jî di warê pêşketina zimanê kurdî bondareke erênî kiriye.

**Rewşenbîr û akademîsyenên kurd çi rolek di parastina zimanê Kurdî de hebûne?**

-Rewşenbîrên kurd her tim li gorî hêz û şiyana xwe ji bo parastina zimanê kurdî xebitîne. Pirî caran wan ji bo doza neteweyî çek jî hilgirtiye. Her wiha wan bi lêkolîn û berhemên xwe di pêşketin û parastina zimanê kurdî de xizmeteke baş kiriye. Heçî akademîsyenên kurd in, ji bilî çend kesên awarte, pirî caran ji zimanê kurdî û têkoşîna neteweyî dûr mane. Ji ber ku zanîngeh li Kurdistan û metropolên dewletên ku kurdan di bin destên xwe de digirin, nebûne warên ramana azad, nemaze jî di warê kurdayetiyê de li ber zanyaran kend û kospên mezin hebûne, kesên ku li zanîngehan bûne akademîsyen ji xebatên kurdewarî dûr sekinîne. Bo nimûne li bakurê Kurdistanê mirov rastî tu akademîsyenên kurd ên ku ji bo doza kurdî xebitîne nayê. Di vî warî de Îsmaîl Beşîkçî heye, ew jî ne kurd e. Wekî din jî şehîda çapemeniya kurd Gurbettellî Ersoz mînakeke din e; wê jî xebata xwe ya rojnamegeriyê bi zimanê tirkî kiriye û paşê jî li çiyayên Kurdistanê şehîd ketiye. Lê ciwanên kurd ji bo azadiya kurdan dest ji zanîngehê kêşane gelek in. Lê akademîsyenên kurd ku ji bo zimanê kurdî xebatên lêkolînî dikin pir kêm in, ew jî bi piranî li Ewropayê dijîn.

**Gelo zimanzan û wêjevanên kurd dema ku di radyo û televîzyonan de diaxivin, zêde guh nadin regez û pîvanên zimanê kurdî, hûn ji bo vê çendê çi dibêjin?**

-Bi baweriya min kesên zimanzan, divê guh bidin rêz û rêçikên zimanê kurdî. Her wiha bi qasî ku ez pê dizanim, giş jî di vî warî de bi hişyarî tevdigerin, lê reng e ew li ser hinek pîvanan ne lihevkirî bin. Bo nimûne, em di dema nivîsandinê de pîvana Celadet Bedirxan a ku dibêje, berî dengê /y/ dengê /î/ nerm dibe û dibe /i/ dipejirînin, lê hinek zimanzan vê yekê napejirînin. Di hinek pîvanên din de jî dubendî û nelihevî hene. Wekî din kesên ku li ser zimanê kurdî xebatê dikin, di dema axaftina xwe de jî li gorî wan pîvanan tevdigerin.

Heçî wêjekarên kurd in, rewşa wan cuda ye. Hinek ji wan li gorî zimanê nivîskî napeyivin, pîvanên rêzimanê li ber çavan nagirin. Bi baweriya min ev kêmasiyek e, divê ew jî li gorî rêz û rêçikên zimanê nivîskî bipeyivin.

Lê pêwîst e bê zanîn ku zimanê nivîskî û zimanê axaftinê ji hev cuda ne. Hin caran kesên ku pîvanan datînin jî di axaftina xwe de li gorî devoka ku pê mezin bûne, dipeyivin. Ev yek jî heta radeyekê tiştekî asayî ye. Li gorî baweriya min heke kesên ku bi pirs û pirgirêkên zimanê kurdî bilî ne û pê dinivîsin, li gorî rêz û rêçikên zimanê nivîskî xeber bidin dê baş bibe. Ji ber ku kesên din jî çav li wan dikin û wan ji xwe re wekî mînak digirin. Ji bo ku ew rêz û rêçik li nav civakê belav bibin û tê de bi cih bibin, televîzyon navgîneke girîng e, lewre jî divê rast bê bikaranîn.

**Medya û perwerdehiya zimanê kurdî heya çiqasî di parastina zimanê kurdî de rol lîstiye?**

Medyaya kurdî çi nivîskî, çi dîtbarî û çi jî bihîzyarî heta roja îro karekî baş ji bo parastin û pêşvebirina zimanê kurdî kiriye. Kovar û rojnameyên bi zimanê kurdî hatine weşandin, ji rojnameya pêşîn Kurdistanê bigire heta rojnameyên îro yên mîna Azadiya Welat, Kurdistanî Nwê, Xebat û rojnameya we Agirî, hemû jî xizmeteke baş ji bo parastina û pêşvebirina zimanê kurdî dikin. Her wiha di parastina zimanê kurdî de rola Radyoya Erîvanê, Radyoya Baxda û Radyoya Tehranê, dîsa êzgehên ku bi awayekî nehênî ji şax û çiyayên Kurdistanê dengê têkoşîna neteweyî gihandiye gelê kurd, gişan xizmeta zimanê kurdî kiriye. Îro jî hejmareke girîng a televîzyonên satelaytê pêk hatiye. Ew jî xizmeteke baş dikin, lê heke rast û bi awayekî karîger bêne bikaranîn, dikarin xizmeteke baştir bikin. Her wiha divê mirov malperên li ser înternetê jî ji bîr neke, lewre ew jî wekî

nû yê navgînên ragihandinê ye, niha bi dehan malper hene û xizmeta zimanê kurdî dikin.

Heçî perwerdehî ye, navgîna sereke ya parastin û pêşvebirina zimanekî ye. Lê mixabin ji bilî başûrê Kurdistanê, kurd ji vî mafê bingehîn bêpar mane. Hêzên dagirker derfet nedaye ku li sê parçeyên Kurdistanê; Bakur, Başûrê Rojava û Rojhilat kurd bi zimanê kurdî perwerde bibin. Perwerdehiya li medreseyên Kurdistanê û hîndekariya zimên a nehênî ya partî û rêxistinên Kurdistanî xizmetek kiribe jî zêde bandoreke berfireh li civakê nekiriye. Nemaze li bakurê Kurdistanê nifşên nû ji perwerdehiya bi zimanê kurdî bêpar in, lewre jî her roj ji ziman û çanda kurdî dûr dikevin, di nav çand û zimanên din de nasnameya xwe winda dikin.

Di vî warî de têkoşîneke taybet pêwîst e, êdî rejîmên olîgarşîk û dagirker demeke dirêj nikarin kurdan ji vî mafî bêpar bihêlin, lewre divê kurd jî amadehiya xwe bikin û hin derfetan bi destên xwe biafirînin. Her wiha derfetên heyî jî bi kar bînin. Bo nimûne li Bakur derfetên vekirina qursên taybet ên ji bo kurdan hene, lê kurd nikarin/naxwazin vê derfetê bi kar bînin.

Her wiha televîzyonên me di vî warî de dikarin xizmeteke baş bikin, lê ji bilî bernameyên muzîkê û nîqaşên siyasî, tiştek bi ber çavan nakeve. Ji bo perwerdehiya li ser înternetê derfet hene, lê tu rêxistinên kurdan li ser vê yekê serê xwe naêşînin. Ji bilî van, nemaze zanîngehên li Başûr dikarin di vî warî de alîkariyê bikin da ku kadroyên perwerdehiya bi kurdî bigihêjin, lê ew jî vî barî hilnagirin. Wekî din jî, kurd dikarin li welatekî Ewropayê zanîngehekê vekin, lê heta niha kesî karekî wiha nekiriye. Kurd her tim mane li benda dewletên dagirker da ku wî mafî bidin wan ku perwerdehiya kurdî dest pê bike. Bi baweriya min ev çemk û nêzîkîtêdayîn şaş e. Divê kurd zend û bendan badin, her maleke kurdan bikin dibistaneke kurdî. Heke wisa bibe, tu hêz û dewlet nikare rê li ber wan bigire.

**Hûn niha bûne serokê Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê. Li ser kar, xebat û bernameyên Enstîtuyê ji xwendevanên Agirî re biaxive?**

Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê, di 18'ê avrêl (meha 4'an) a 1992'an de bi pêşengiya rewşenbîrên kurd ên mîna Mûsa Anter û Îsmaîl Beşîkçî hate avakirin. Ji wê rojê vir de xebatên xwe li ser ziman, wêje û dîroka kurdî dimeşîne. Enstîtuya me di nav mercên şer de dest bi xebatan kiriye, lewre jî bi astengiyan dewleta dagirker re rû bi rû maye. Bo nimûne avakarê Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê Mûsa Anter bi destê hêzên xwînrêj ên dewleta dagirker hate kuştin.

Her wiha ji ber mercên heyî, xebatên wê hinekî sembolîk man. Ligel vê yekê jî bi dehan berhemên li ser ziman, wêje û dîroka kurdî derxistine. Ji wan du ferhengên mezin yek bi kurdî- tirkî (131 hezar peyv), yek jî bi tirkî – kurdî (60 hezar peyv), pirtûkeke rêzimana kurdî (Rêziman û Rastnivîsa Zaravayê Kurmancî), du pirtûkên fêrkirina kurdî (Kurdiya Nûjen, Kurdiya Hêsan), du ferhengên biwêjan (îdiom), pirtûka wêjeya kurdî, Şîroveya Dîwana Melayê Cizîrî, Dîrok Mîrekên Şîrwan, Mamosteyê Sêyemîn Xanî, tîpguhêziya birek helbestên klasîk ên kurdî ji hêla Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê ve pêşkêşî xizmeta gel hatine kirin. Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê kovareke lêkolînî bi navê Zend diweşîne.

Ji xeynî wan berheman, gelek panel, semîner û konferans ji hêla Ensîtuya Kurdî ya Stenbolê ve hatine lidarxistin. Di gelekan de jî rêveberên wê beşdariyeke çalak kiriye.

Wekî Enstîtuya Kurdî di xebatên fêrkirina kurdî de jî her tim pêşengî kiriye. Niha jî pêşengeke Tevgera Ziman û Perwerdehiya Kurdî (TZPKurdî) ye.

Tevgera Ziman û Perwerdehiya Kurdî jî piştî ku qursên bi zimanê kurdî hatin girtin, di destpêka sala 2006'an de dest bi xebatên parastin û pêşvebirina zimanê kurdî kir. Niha li nêzî 25 bajarên bakurê Kurdistanê komîsyon û meclisên wê hene. Aktîvîstên TZPKurdî li aliyekî xebatên hişyarkirina kurdan di warê parastina zimanê kurdî de dikin, li aliyê din jî li gelek cihan xwendin û nivîsandina kurdî hînî gel dikin.

Li Bakur polîtîkaya pişaftina çand û zimanê kurdî ji bo dewleta tirk polîtîkayeke bingehîn û stratejîk e, li hemberî vê yekê divê ji bo kurdan jî têkoşîna parastin û pêşvebirina zimanê kurdî û bidestxistina mafê perwerdehiya bi zimanê kurdî xebateke stratejîk be. TZPKurdî bi vê armancê hatiya avakirin û bi vê hişmendiyê xebatên xwe dimeşîne. Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê jî wekî akademiya vê tevgerê xebatê dike.

**Hûn bi giştî pêşeroja ziman û wêjeya kurdî çawa dibînin?**

Pêşeroja zimanê kurdî girêdayî çarenivîsa gelê kurd e. Heke kurd mafên xwe yên demokratîk û neteweyî bi dest bixin, dê karibin zimanê xwe û hebûna biparêzin. Lê belê heke vê yekê nekaribin, qet nebe li çend parçeyan dê kurd bihelin. Niha xetereya herî mezin li bakurê Kurdistanê ye. Polîtîkaya helandin û qirkirina spî, li nav kurdên bakurê Kurdistanê heta radeyekê bi ser ketiye. Nemaze nifşên nû hînî zimanê xwe nabin, heta malbat bi destên xwe zarokên xwe hînî tirkî dikin, bi hinceta ku zarok di jiyanê de zehmetiyê nekêşin. Em niha wekî Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê û Tevgera Ziman û Perwerdehiya Kurdî li hemberî vê yekê têdikoşin, lê hêza me tenê têrê nake, pêdivî têkoşîneke xurt û berfireh heye.

...Kekê Samî sipas ku we dema xwe ji bo hevpeyvîna me veqedand.

Ez spasiya we dikim, ji bo we ev derfet da min. Gelekî spas, mala we ava.

**Ji bo bersîvdana Xaçepirsa hejmaran (Sudoku)yê, tenê van sê xalên jêrîn berçav bigirin:**

**1. Hejmarên 1-9'ê di xet(xêz) û stûna serjêr de tenê carekê dubare dibe.**
**2. Hejmarên 1-9'ê di xet(xêz) û stûna çeprast de tenê carekê dubare dibe.**
**3. Hejmarên 1-9'ê di nava çargoşeke 3×3 de tenê carekê dubare dibe.**

## Xaçepirsa Hejmaran (Sudoku)

| | | | | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 7 | 1 | 9 | | 4 | 3 | | | 8 |
| 8 | | | 7 | | | | | |
| 5 | | | 8 | | 9 | 4 | 7 | 2 |
| | 4 | 2 | | | 6 | | | 5 |
| 3 | | | | 2 | | 1 | 9 | 6 |
| 6 | | 7 | 5 | | | 2 | 3 | |
| | | 6 | | 9 | 4 | 8 | 5 | 7 |
| | | 1 | | 7 | 8 | 3 | 2 | |
| 9 | | 8 | 3 | 5 | | 6 | | 1 |

## Bersiva Sudoku a Hejmara 55'an

| | | | | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 6 | 1 | 7 | 4 | 2 | 5 | 9 | 8 | 3 |
| 3 | 8 | 9 | 1 | 7 | 6 | 2 | 4 | 5 |
| 4 | 5 | 2 | 8 | 3 | 9 | 6 | 1 | 7 |
| 7 | 6 | 8 | 5 | 4 | 3 | 1 | 9 | 2 |
| 5 | 2 | 1 | 6 | 9 | 8 | 3 | 7 | 4 |
| 9 | 3 | 4 | 2 | 1 | 7 | 5 | 6 | 8 |
| 1 | 4 | 6 | 7 | 5 | 2 | 8 | 3 | 9 |
| 8 | 9 | 5 | 3 | 6 | 4 | 7 | 2 | 1 |
| 2 | 7 | 3 | 9 | 8 | 1 | 4 | 5 | 6 |

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî
Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci. php
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat: AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

E - Mail:
agiri2003@hotmail.com
agiri2003@googlemail.com

# Prag: Dostê Kurdan "Schwarzenberg" Bû Wezîrê Karê Derve

Arîstokratê navdar "Karle Schwarzenberg" ku neviyê Kurdeke Gurcistanê ye, bû Wezîrê Karê Derve yê Komara Çekê. "Schwarzenberg" yek ji wan kesan e ku alîkariya **Bihara Prag**'ê kiriye.



Ji çepê ve: Siyasetvanê Kurd Dr. Yekta Uzunoglu, Parlemanter "Tana Fischer Ova" û "Karel **Schwarzenberg**"

"Karle" di sala 1937'an de li Pragê hatiye cîhanê. Hevwelatiyê Komara Çikê û hem jî welatiyê Swîsreyê ye. Piştî şerê cîhanê yê duyemîn, malbata "Schwarzenberg" ji Çekoslovakiyaya wê demê hatiye qewirandin. Dema ku malbata wî ji Bohemyayê derketiye, 11 qesrên wan û 30 000 hektar erdê wan hebûye.

"Schwarzenberg" alîkariya mezin dide **Bihara Prag**'ê û piştgiriya Serok Komarê kevin "Havel" dike. Ew ji bo mafên mirovan jî dikeve nava hewldanan û di sala 1984'an de dibe Serokê Fedrasiyona Helsînkiyê ji bo mafên mirovan.

"Schwarzenberg" bavê 3 zarokan e, endamê Partiya Lîberal e û endamê gelek weqfên navdar yên Ewropî ye. Tê ragihandin ku bapîrê "Schwarzenberg" Kurdek Gurcistanê ye û "Karel Schwarzenberg" wek dostek nêzîk yê Kurdan tê naskirin.

# Kedkarên Seqizê 4 Meh İn Miaş Nestandine

Malpera "sharnews"ê da zanîn ku kedkarên şîrketên ser bi Şaredariya bajarê Seqizê eva 4 meh in miaşê xwe yê mehane ne wergirtine.



Nedana mehaneya kedkaran ji aliyê şîrketên peymankar yê bûye sedema pêkhatina nerazîbûna berfireh ya kedkaran û jiyana wan rastî gelek dijwariyan kiriye.

Xwediyên şîrketan jî dibêjin ku pirsgirêkên pêkhatî ji ber nedana pereyê wan ji aliyê Şaredariyê ye.

**Kedkarên Karxaneya Geç ya Kurdistanê jî 5 meh in miaş ne wergirtine**

Qasê 600 kedkarên Karxaneya Geç ya Kurdistanê li Bîcarê bêtirî 5 mehan in miaş û heqdestê xwe yê mehane ne wergirtine. Serbarê vê çendê ku kadkaran berdewam serî li Îdareya kar, Fermandarî û Parêzgeha Kurdistanê bona wergirtina miaşê xwe û çareseriya pirsgirêka han xistine, lê heya niha bersivek bi wan nehatiye dayîn.

Hêjayî gotinê ye, Şaredariya bajarê Seqizê rojekê berî hilbijartina gera Sêyem ya Şêwra Bajar ji her kedkarekê re 250 000 Tûmen Pere wekî alîkarî dabû, lê ji meha yekem ya Payîzê şûnde Şîrketên ser bi Şaredariyê tu pareyek bo dayîna mehana karkeran ne wergirtine.

# Hejmara Kesên Îdamkirî Li Ehwazê Gihîşte 9 Kesan

Çend rojan berî niha bû ku 4 kesên din ji Erebên Ehwazê li Îranê bi buxtana teqînên bihara 2005'an hatin darvekirin.

Bi îdamkirina wan 4 kesên vê dawiyê, hejmara welatiyên Ereb yê Ehwazê ku ji ber alozî û nerazîbûna gelî di herêma Erebakincî ya Başûrê Rojhilatê Îranê hatine gunehbar kirin, gihîşte 9 kesan.



Erebên Xozistanê ji bo bidestveanîna mafên xwe ên neteweyî xebatê dikin, lê rejîma Komara Îslamî wekî hemû gelên din yê Îranê, bi kuştin, îdam, îşkence, girtin û ... bersiva daxwaziyên wan yên demokratîk û rewa dide.

Rêxistinên Mafên Mirovan li Îranê dibêjin ku kesên îdamkirî bêguneh in û kesê sebebkar di nava bajarê Ehwazê bi serbestî digere û heta niha nehatiye girtin. Çavkanî dibêjin temenê çend kes ji wan 18 – 20 sala ye û yan kedkar in yan jî xwendina nizim didomînin.

## Di Sala 2006'an De Bêhtir Ji 325 Jinan Dawî Li Jiyana Xwe Anîn Û Xwe Şewitandine

Li gor rapora Wezareta Mafên Mirovan li Kurdistanê, di sala 2006'an de bêhtir ji 325 jinan dawî li jiyana xwe anîn û xwe şewitandine.



Ev belgenameya di hevpeyvîneké de ji bo Radyoya Îraqa Azad ji hêla berpirsiyara beşê zarok û jinan ve di Wezareta Mafê Mirovan de li Kurdistanê **Perwîn Ehmed** hate diyarkirin.

Navbirî dide xuyakirin ku ev hejmara xweşewitandina jinan ji gelek pirsgirêkên civakî tê û nexweşiyeke dîrokî ya kevnar e.

Çavkanî herweha diyar dike ku yek ji wan pirsgirêkan helwesta malbatê li hember jinê, cudahîdanan di navbera jin û mêran û binpêkirina mafê jinê ye.

Di dawiyê de Perwîn Ehmed diyar dike ku, li gelek deverên Kurdistanê bi dehan bûyerên ku nehatine diyarkirin hene.

Perwîn Ehmed got: ew jin bûne qurbanên wan nerînên civakî û dezgehên mafên mirovan ji wan bûyeran ne agahdar in.

**Jêder: TISHK TV**

# Îdama Welatiyeke Bajarê Bîcarê

Welatiyeke bajarê Bîcara Kurdistana Îranê, bi navê **Şukrula Êwezî** ku ji mirinê re hatibû mehkûmkirin, di girtîxaneya Sine hate darvekirin.

Ew yê gundê Şîrkuj ya ser bi bajarê Bîcarê ye, cotkar e û bi buxtana kuştina gundiyeke din ev ceza xwaribû.

Tê gotin, wî heya dema dawiya jiyana xwe digot hajî çawaniya wê kuştinê nebûye û destêdebûn di wê qetlê de red kiriye.